Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal de

Hejmar: 101

15'ê Çileya Pêşîn a 2008

Buha: 150 Tûmen

agiri

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

**Peyama Deftera Siyasî Ya PDKÎ Bi Henceta 26'ê Sermawezê, Roja Pêşmergên Kurdistanê**

**Di Paşkoya taybet de**

# PÊŞMERGE SEMBOLA BERXWEDANÊ YE





26'ê Sermawezê Roja Pêşmergên Kurdistanê ye. Pêşmerge îrade û vîna herî bilind a nasnameya neteweyî ya gelê Kurd û sembola berxwedana azadîxwaziya gelê Kurd û sembola pênaseya Kurdbûna me ye. Ev roja dîrokî û mezin ji hemû Pêşmergên Kurdistanê û nemaze Pêşmergên PDKÎ pîroz be. Ji ber ku PDKÎ ew roja dîrokî bona rêzgirtin ji ked, xebat û fidakariyên Pêşmerge re diyarî kir.

Bi vê henceta dîrokî û bona rêzgirtin ji rola Pêşmerge di xebata rizgarîxwaziya gelê Kurd de, îsal ji çalakî û şahiyên cur bi cur rêve çûn. Me di vê hejmara Agirî de (101), 4 rûpelên taybet weke paşko amade kiriye ku rapor û çalakiyên taybet bi 26'ê Sermaweza îsal tê de hatine weşandin.

## 11 Partî Û Rêxistinên Kurd Û Kurdistanî, Teqîna Dawî Li KerKûkê Şermezar Kirin




"Em partî û rêxistinên Kurd û Kurdistanî yên jêrîn piştrast in ku hêzên demokrat, aşitîxwaz û pêşverû bi hevkarî û hevxebatiya xwe ve nahêlin ku armanca terorîst û neyarên azadî û demokrasî bicî bibe.

Em bi tundî êrîşa terorîstî ya dawî li Kerkûkê mehkûm dikin û carekî dinê piştgiriya xwe pêşkeşî serokatiya siyasî ya Herêma Kurdistanê dikin"... **R.2**

# Daxuyaniya Hevbeş Ya Partî û Rêxistinên Kurd û Kurdistanî Li ser Bûyera Dawî Li Kerkûkê

Neyarên demokrasî, azadî û aşitiyê carekî din xwîna kesên sivîl û bêtawan rijandin.

Destê dijminên azadî û bexteweriya gelê me, dîsa bi xwîna Kurdan sor bû.

Terorîsteke xwekuj di xwaringehekê de xwe teqand û bûye sedema şehîd û birîndarbûna bêtirî 100 kesan.

Bê guman armanca êrîşa hanê têkdana rewşa aramî û ewlekariya li Kerkûkê ye.

Guman têda nine, armancek ji armancên terorîstan, ku nokerên dewletên dagirker û kevneperestên navçeyê ne, pêşîlêgirtina cîgirbûna aşitî û demokrasî û federalî li Îraqê ye.

Dagirkerên Kurdistanê û dewletên kevneperest û dîktatorên navçeyî, bi destê nokerên xwe yên terorîst, dixwazin di nava gelên Kerkûkê de nakokî û dijmintiyê pêk bînin û bi vî awayî pêşiya cîbecîkirina xala 140 ya Destûra Îraqê bigrin.

Li navçeya Rojhilata Navîn, hêzên nijadperest û şoven, dewletên dîktator û kevneperest dijî nêzîkbûna dewleta Turkiyê û Hikûmeta Herêma Kurdistanê ne. Hêz û dewletên hanê dixwazin li Kerkûkê nakokiya navbera Kurd û Turkmenan de



kûrtir bikin, daku bi vî awayî pêşiya nêzîkbûna Tirkiyê û Hikûmeta Herêmê bigrin.

Em partî û rêxistinên Kurd û Kurdistanî yên jêrîn piştrast in ku hêzên demokrat, aşitîxwaz û pêşverû bi hevkarî û hevxebatiya xwe ve nahêlin ku armanca terorîst û neyarên azadî û demokrasî bicî bibe.

Em bi tundî êrîşa terorîstî ya dawî li Kerkûkê mehkûm dikin û carekî dinê piştgiriya xwe pêşkêşî serokatiya siyasî ya Herêma Kurdistanê dikin.

Em banga Neteweyên Yekbûyî (UN), Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê, Yekîtiya Ewropa (EU), dezgeyên humanîst yên navnetewî dikin ku bona cîgirbûna aşitî, aramî, demokrasî û federaliyê li Îraqê, piştgiriya hêzên pêşverû, bi taybetî demokratên Kurd bikin.

Em banga karbidestên Tirkiyê dikin, ku bona geştirbûna peywendiya Kurd û Turkmenên Îraqê hewl bide, bona cihgirbûna aramî û aşitî li navçeyê, pêywendiyên xwe digel Hikumeta Herêma Kurdistanê di warên siyasî, aborî, dîplomasî û çandî de xurttir bike.

**13.12.08**

**Partiya Demokrata Kurdistana Îranê**

**Partiya Sosyalîsta Kurdistanê-PSK**

**Partiya Demokrata Kurdistan-PDK (Bakur)**

**Partî Demokratê Kurd Li Sûrî (Elpartî)**

**Partiya Pêşverûya Demokrata Kurd Li Sûrî**

**Partiya Yekîtî Demokratê Kurd Li Sûrî**

**Partiya Welatparêzên Demokratên Kurdistan-PWD**

**Partiya Azadî Kurd Li Sûrî**

**Rêkevtina Demokrata Kurd li Sûrî**

**Partiya Azadiya Kurdistanê (PAK)**

**Rêxistina Xebata Kurdistana Îranê**

**Kavûs Ezîzî:**

# "Agirî Her Rêçika Kovara 'Ararat'ê Ye"

Bi sedema derketina hejmara 100 a duheftînameya Agirî, ez bi dil û can li nivîskarên Agirî, ew kesên ku serbarê hemû kêmasiyan, karîne heta niha vê weşanê bidomînin, pîroz dikim.

Agirî her rêçika Kovara 'Ararat'ê ye ku di serdemeke pirr hestyar û bê îmkanatî de heta 4 hejmaran hate derxistinê.



Kavûs Ezîzî, Çalakê Siyasî

Di bakûrê Rojhilata Kurdistanê de ewa cara yekê ye ku weşanek bi awayekî rêk û pêk tê weşandin, bi xasma bi zaraveyê Kurmancî û bi tîpên latînî, û her wisa bi awayekî serdemî weşanê dike.

Ez li vir dixwazim bibêjme wan kesên ku bi awayekê keda wan di vê weşanê de hebûye û heye, hûn kesên xwedan ked û fîdakar ên gelê kurd in, we karî bidin xuyakirin ku gelê me yê Bakûrê Rojhilatê Kurdistanê xwedî hestekî paqij a kurdayetiyê ye û hûn jî cihê şanaziya me ne.

Agirî bi qelem û keda we îro yê bûye sengerekî qehîm bo xwedan qeleman û bûye çavkaniyek bo xwendevanan.

Bila ez li vir, rol û piştgirya PDKÎ jî bînim ziman ku yek ji mercên herî balkêş û girîng di weşandin û serkevtina Agirî de ye, lê ked û berdewamiya nivîskar û kedkarên wê jî aliyekî dinê yê serkevtinê ye.

Di dûmahîkê de dîsan serkevtina Agirî li hemû dilsozên çapemeniya kurdî pîroz dikim.

Bila gelê me gellek kesên mîna we hebin, hertim dê serkevtî be û pêngavên hêja bo gihîştin bi armancên xwe bavêje. Serkevtî bin.

## Daxuyaniya Hevbeş: "Em Topbarankirina Sînorên Başûrê Kurdistanê Mehkûm Dikin"

Îro zêdetirî 2 heftiyan dibe, topxaneya hêzên Îranê careke din bêrawestan beşek ji deverên tixûbên Başûrê Kurdistanê topbaran dikin. Di encama vê kiryara dijî mirovane de, xisar û ziyaneke berçav li xweza û mal û halê akinciyên wê navçeyê ketiye û ê bûye sedema aware û derbiderbûna wan.

Ev êrîş û destdirêjiyên Komara Îslamî di halekê de ne ku ew navçeyên ku êrîşî ser wan hatiye kirin, tu alozî û rewşeke ne awarte nine, lewra tenê armanca van topbaranên Komara Îslamî, domandina serberedayiyê di herêmê de û dijberîkirina korane bi Kurd re û binpêkirina serweriya Başûrê Kurdistanê û zext û givaşanîn bo Hikûmeta Herêma Kurdistanê ye.

Lewra em bi tundî û hevdeng van êrîş û destdirêjiyan mehkûm dikin û tevî xûşk û birayên zirardîtî hevderdiya xwe radigehînin. Hevdem tevî vê yekê, em daxwazê ji Hikûmeta Îraqa federal û hêzên hevalbend li Îraqê dikin ku li hember van sereberdayî û destdirêjiyane bêdeng nebin û çi din domkirina van tawanane li Komara Îslamî qebûl nekin.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê- Komîteya Birîtanya**

**Komeleya Şoreşger a Zehmetkêşên Kurdistana Îranê- Komîteya Birîtanya**

**Partiya Azadiya Kurdistanê- Rêxistina Birîtanya**

**Civata Çandî û Medenî a Kurdên Xorasanê – Birîtanya**

**Îngilîstan**

**24'ê Sermaweza 2708**

**14'ê Çileya Pêşîn a 2008**

Dxuyaniya Hevbeş Bi Henceta 60'emîn Salvegera Danezana Gerdûnî Ya Mafê Mirovan:

# "EM BI HEV RE XEBAT Lİ DİJÎ BİNPÊKİRİNA EŞKERE YA MAFÊ MİROVAN Dİ ÎRANÊ DE BİDOMÎNİN"

Îsal, 10'ê Çileya Pêşîn, Roja Cîhanî ya Mafê Mirovan, hevdem e tevî şêstemîn salvegera derkirina **'Danezana Gerdûnî a Mafê Mirovan'**. Hêzên berevanîkerên azadî û wekheviyê û xebatkarên rêya dadmendiya civakî û demokrasiyê di seranserê cîhanê de, çendîn dehsal in ji bo wergirtina giştî û cîhangirbûna mafên mirovan xebat kirine heta piştî bidawîhatina şerê duyemîn ê cîhanî û rohnbûna ew cinayetên ku di wî şerî de qewimîn û agahdarbûn ji hêza mirov bona jinavbirin û meşandian kiryarên dirindane, nasîna mafên bingehîn ên mirovan ê bûye pirseke girîng a civaka cîhanî. Di bervar 26.06.1945'an de, Danezana Neteweyên Yekbûyî weke belgeya avakirina Rêxistina Neteweyan hate wajokirin û sê sal pey re di bervar 10.12.1948'an de, deqa Daxuyaniya Cîhanî ya Mafê Mirovan ji aliyê Koma Giştî ya Rêxistina Neteweyên Hevgirtî ve hate pejirandin. Bingeha fikrî a vê belgeyê ku destkevteke cîhanî ye, pişta xwe bi mijara mafê mirovan û perçiqandin û binpêkirina vî mafî girê daye. Ev mafe cîhangir e û li gora wê, di navbera 60 salên borî de pergaleke hiqûqî çê bûye ku ji belge û dokument, peymannameyên navneteweyî û ji hemûyan girîngtir Danezana Gerdûnî ya Mafê Mirovan pêk tê. Di destpêk û madeya yekem a Danezana Gerdûnî ya Mafê Mirovan de hatiye: "bi dubare pejirandina wê, bawerî bi mafên bingehîn ên mirovan, keramet û nirx û bihayên mirov, mafê wekhev yê jin û mêran û welatên mezin û biçûk".

Rêzgirtin ji vê rojê, her di wê demê de wê rastiya tal tîne bîra mirov ku xelkê Îranê di heyamê şêst salên borî de, ji bilî çend qonaxên kurt, tevî binpêkirina berdewam a mafên mirovî ên xwe berbirû bûne û rejîmên desthilatdar serbarê wajokirina Danezana Gerdûnî ya Mafê Mirovan û peymannameyên têkildar û dana soza parastin û liberçavgirtina mafên mirovan, berdewam xwe ji meşandina wan parastiye.

Di rejîma dîktator a Şah de, danîna yek ji kirêgirtiyên destnîşankirî yê malbata Pehlewî ji bo serokatiya **'Komîteya Mafê Mirovan'**, di rastî de bêrêziyeke xuya û eşkere bi mijara mafê mirovan bû û di halekê de ku her dengeke rexne û nerazîbûnê bi serkut û tepeserkirinê dihate bersivandin û ciwan kom kom dihatin îdamkirin, bi bêşermiyeke zaf **'Konfernasa Navneteweyî ya Mafê Mirovan'** li Tehranê jî dihat lidarxistin.

Lê desthilata sereberdayiya olî a Komara Îslamî ku bûye cihgirê rejîma Şah, di warê serkut, kuştin, girtin û qirkirinê de kete pêşiya rejîma Şah. Komara Îslamî ku di qanûnên wê de cudahîdanan û binpêkirina mafên mirovan bi fermî hatiye naskirin, bi bikaranîna mesrefeke zaf a propagandayê, çendîn salan hewil da ku bi anîne rojeva pirsa **'Mafê Mirovê Îslamî'**, berheqî û rewabûneke hiqûqî bide siyaseta dijî mirovane a xwe. Lê berxwedan û berdewamiya azadîxwazên Îranê û raya giştî a cîhanê tevî vê siyaseta rejîmê, nehêla ku bîr û fikra pêkanîna cudahiyê ji bo giştî û cîhangirbûna Danezana Gerdûnî ya Mafê Mirovan bi hêceta 'rêjeyîbûna çandî', xwe li derveyî vê danezanê bihesibîne û bi mirovan re di çarçoveya sînorên welateke diyarîkirî de, sereberdayiyane tevbigere û bilive.

Rejîma Komara Îslamî her ji destpêka cihgirbûna xwe ve, bi balnedana tewaw bi soz, peyman û qanûnên navneteweyî, binpêkirina eşkere a mafê mirovan û pêpeskirina maf û azadiyên herî destpêkî ên takekesî û civakî ên xelkê kiriye kar û pîşeya xwe.

Komara Îslamî ne tenê bi berdewambûna girtin, îşkencekirin û kuştina nerazî û dijberan, belkî bi meşandina xurt û berfireh a cezayên weke qemçîlêdan, birrîna endamên laş, daliqandin li ber çavê xelkê û di cihên giştî û wd... de, naveroka kevneperestane û dijî mirovane a xwe bi tevahî da kifşê.

Vê rejîmê ne tenê soz û qirarên xwe ji bo liberçavgirtina Danezana Gerdûnî a Mafê Mirovan û qanûn û rêsayên din yên navneteweyî bin pê kiriye, belku bi anîne rojeva komek hukm û biryarên şerî û pêkanîna 'Dozgeriya Îslamî' û dezgehên cur bi cur ên ewlekarî û leşkerî ên serkut û qirker û lêgerînê, perçiqandina eşkere û berdewam a mafên bingehîn û destpêkî ên mirovan bi tevahî cihgir kiriye.

Rewşa xirab û aloz a mafê mirovan di welatê me de bi awayekê ye ku di organ û saziyên navneteweyî ên têkildar yên mafên mirovan de jî, berdewam deng vedaye. Di Pirraniya civînên Komîsyona Mafê Mirovan ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî de yan belavkirina rapor derheqê rewşa mafê mirovan di asta navneteweyî de, nigeraniya tund û mehkûmbûna fermî a binpêkirina mafên herî destpêkî ên mirovan ji aliyê Komara Îslamî ve tê holê.

Lê hemû ev raporane tenê dikarin goşeyek ji rewşa rasteqîne û eseh a binpêkirina mafê mirovan û rastiya azar û êş û kulên her roj ên xelkê di civaka me de nîşan bidin. Rewşek ku tevî hatne serkara dewleta Ehmedînejad û eşkerebûna zêdetir a girûpên ewlekarî – leşkerî di stûnên rejîmê de, dîsan xirabtir bûye. Jinên civaka me di bin zext û cudahîdanên herî tund de ne. Tevgerên sinfî, civakî ên wekhevxwaz û azadîxwaz ên karker, xwendekar û mamsotayan, bi awayekî hov û dirindane tên serkutkirin. Bersiva daxwaziyên berheq ên neteweyên akincî ên Îranê bi girtîxane, îşkence û îdamê tê dayîn. Nivîskar û rewşenbîr hemû demekê bi gef, tirsandin û sansorê re berbirû ne.

Serbarê desthilatdariya sansor û tund û tûjiyê, raya giştî li hundir û derveyî welat li hember van cinayet û zordarî û binpêbûna mafên herî destpêkî ên mirovan, helwestê digirin. Berevajî xeyala xaw û negihîştî a desthilatdarên Komara Îslamî ku hewlê didin siyaseta serkutkirina dijberan di tarîtiyê de, bêdeng û dûr ji çavê xelkê cîhanê, bidomînin, wijdanên hişyar û raya giştî a cîhanê bêdeng nabin û tevgerên civakî ên niha yên welat ji bo berevanî ji mafên takekesî, sinfî, civakî û siyasî ên xelkê, serbarê meşandina tev awayên serkut û tepeserkirina rejîma Îslamî, nasekine û dê xurt jî bibe û pêşde biçe.

Di salvegera derkirina Danezana Gerdûnî a Mafê Mirovan de, em careke din liv û kiryarên cinayetkarane û dijî mirovane ên Komara Îslamî derbarê binpêkirina tund û berfireh a mafên mirovan, mehkûm û şermezar dikin û em daxwazê ji organ û saziyên navneteweyî ên berpirs dikin ku micid û mukurane dosyayên tawanên Komara Îslamî a Îranê di vê derbarê de bişopînin. Em piştevaniyê ji hewl û xebata ciwanan, jinan, çalakên mafên neteweyî, ronakbîr, kedkar û tex û qatên din yên xelkê bona berevanîkirin ji mafên xwe û berxwedana wan li hember destdirêjiyên rejîmê dikin û em daxwaza piştgiriya tevaliyane a raya giştî a cîhanê li van hewl û bizavane ne. Em daxwazê ji organ û dewletan dikin ku di peywendiyên xwe bi Komara Îslamî re, derheqê meşandina soz û ehdên navneteweyî ên xwe li dor qanûnên mafên mirovan bi awayekî mukur û micid zext û givaşan bo ser rejîma zal bi ser Îranê de bînin. Em ku bi kereta xwe ji bo cihgirkirina maf û daxwaziyên dadperwerane û azadîxwazane ên mirovan dixebitin, amade ne bi hemû hêz û aliyên çep, pêşketinxwaz û demokrat di vê xebatê de hevkariyê bikin.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**

**Komeleya Şoreşger a Zehmetkêşên Kurdistana Îranê**

**Rêxistina Fedayiyên Xelkê Îranê**

**Rêxistina Fedayiyên Xelkê Îranê – Pirranî**

**Duşem, 08.12.2008 – 18.09.1387**

**Hevpeyvîna Taybet A Agirî Bi Girtiyê Siyasî Yê Kurd, Şoriş Gulkar Re:**

# "HÊZÊN EWLEKARİYA KOMARA ÎSLAMÎ Bİ BUXTAN Û ÇALAKİYÊN Lİ DİJÎ TENAHİYA NETEWEYÎ EZ GİRTİM"

**Di van çend salên dawiyê de, binpêkirina mafê mirovan li Rojhilatê Kurdistanê bi awayekî xurt û berfireh ji aliyê rejîma Komara Îslamî a Îranê ve li ser gelê Kurd hatiye meşandin û niha jî bi sedan rojnamevan, rewşenbîr, çalakên sivîl û mafên mirovan li Kurdistanê di girtîgehên vê rejîma dijîkurd de ne. Demekê berî niha yek ji girtiyên siyasî yên Kurd bi navê Şoriş Gulkar ku midehê 2 salan girtî bûye, piştî serbestberbûnê tevlî refên PDKÎ bû, lewra me li ser rewşa girtiyên siyasî, girtîgehên Kurdistanê û hin aliyên binpêkirina mafê mirovan, bi wî re hevpeyvînek taybet pêk anî.**

**Hevpeyvîn: Selîm Zencîrî**

**Zehmet nebe xwe ji bo xwendevanên Agirî bide nasîn?**

Ez Şoriş Gulkar, kurdekî zulmlêkirî û çewsandî me û li bajarek bombebarankirî ji hemû aliyekê, bi navê Sine ku pişkek ji welatê belalêdayî û dîktatorperwer ê Îranê ye, hatime dinyayê û bi jiyanekî tejî ji zulm û zordariyê dest pê kiriye. Min heta dîploma wêjeyê xwandiye. Min di heftînameya "Peyam Mardoom" (Peyama Gel) karê rojnamegeriyê kiriye ku hate daxistin û piştre jî min di NGO'yekê de bi navê **Çiya** kar kir ku çalakiyê wê di warê parastina xeza û jîngeha Kurdistanê bû, ew jî hate daxistin. Ji ber xebat û çalakiyên siyasî û sivîl zistana 2006'an ez hatim girtin.

**Çalakî û sedema girtina we çi bû?**

Niha ku serdemê Golobalîzasiyonê ye û cîhan pêşkevtinên zaf bi xwe dibîne, lê welatê wêran, bextreş û dagirkirî yê me yê bûye cihê tirs, girtin û kuştinê, lewra min jî di wê qonaxê de bi hestkirin bi hebûnê, dest avête kar û têkoşînê û ji rêya nivîsîn û çalakiyên sivîl û bi pişikdarî dii girevên aştîxwazane yên xelkê ji bo nîşandana nerazîbûnê derheq wê rewşê. Lê mixabin rejîma paremayî, dîktator û mafîyaya Komara Îslamî ya Îranê ku tab û taqeta tu hizr û dengekî cuda û azadîxwazane nine, lewra ez di meha Befranbara 1385'ê Rojî de (Çileya Paşîn ya 2006) ji aliyê hêzên ewlekariya rejîmê, bi buxtan û tawana çalakiyên li dijî tenahiya neteweyî hatim girtin û rapêçî girtîgehê kirim.

**Tu çiqas hatî zîndanîkirin?**

Bo midehê du mehan ez di gorekî sar û tarî bi navê hepsa takekesî li îdareya Ewlekarî(Îtilaat) de bûm, paşan ji bo girtîgeha navendî a bajarê Sine hatim şandin û heta vê dawiyê jî her li wir bûm.

**Reftar û livîna karbidestên rejîmê tevî girtiyên siyasî û bi xasmanî girtiyên kurd çawa bû?**

Diyar e rejîma zalim û xwedî îdeolojiyekî hişk û girtî weke Komara Îslamî ya Îranê, bi dirêjiya temenê xwe, herdem kesek ku cuda ji wan fikirîbe, bi kerb û kînek zaf pê re reftar kiriye. Bi xasmanî ev rewşe ji bo girtiyên siyasî gellek xerabtir e, çunku karbidestên rejîmê girtiyên kurd bi dijminên xwe yên sereke dizanin û tu mafek ji bo wan bi heq nizanin.

**Ji herema xwe hin zanyariyan li ser girtîgehên rejîmê bide xwendevanên me?**

Girtîgeh yan baştir e em bêjin ew çalên reş ku çekçekûleyên kor yên Cemaranê hene, tu alav û îmkanatên îroyîn têde nînin, rejîm bi enqest wî karî dike û rewşek nexweş pêk tîne, heya ku bandorek nerênî li ser îrade û bîr û baweriya girtiyan dabinê. Bo mînak rewşa girtîgeha navendî ya



**Şoriş Gulkar**

bajarê Sine ku ez bi xwe tê de bûm, pirr xirab bû. Di warê tenduristiyê de rewş gellek kambax bû, di benda ku ez tê de bûm, 145 kes hebûn ku me tenê serşokek hebû ji bo xweşuştinê. Madeyên bêhişker (narkotîk) bi berfirehî û hêsanî dest dikeve Di girtîgehan de pirr bi hêsanî kirîn û firotina madeyên hişber tê kirin. Rayedarên girtîxaneyan hewlê didin ku herî zêde girtiyên siyasî û ramanê tûşî madeyên hişber bikin. Ji ber rewşa xirab a tenduristiya nava girtîgehê gellek nexweşiyên cur bi cur peyda bûne. Berpirsiyarên girtîgehan jî tu çareseriyekê ji wan re nakin û nekirine. Bo nimûne di girtîgeha navendî a bajarê Sine de, 960 girtî hebûn ku 87 kesên tûşbûyî bi vîrûsa "HIV"yê hebûn û bi azad di nav beşên zîndanê de digeriyan û hatin û çûna hemû girtiyan dikirin, eva gellek cihê tirsê ye. Pêkanîna vê rewşê ji aliyê berpirsiyarên girtîgehan tê meşandin.

**Bi giştî çalakên sivîl û mafê mirov li Îranê û bi taybetî li Kurdistanê di çi rewşekê de ne?**

Di rewş û zirûfek tejî ji tirs û xofê de dijîn, tirs ji wê ku herdem û gavekê egera wê heye bikevine ber êrîşa karbidestên cehl û nezaniyê û radestî reşçalên sedsala navîn bihên kirin û berbirûyê çarenivîsek nediyar bibin.

**We çi peyamek ji bo ciwanên kurd û saziyên mafê mirovan li ser rewşa girtiyên siyasî li Îranê heye?**

Îro bizava rizgarîxwaziya gelê kurd ku ciwan jî parekî herî zaf ya wê bizavê ne, ber bi geşekirin û pêşveçûnê diçe û hêvîdarim di pêşerojek nêzîk de, em Îranek azad, demokratîk û federalî bibînin ku dadperwerî têde cihgir bibe. Lewre nabe em bêdeng rawestin û divêt di xebat û tekoşînê de berdewam bin. Di dawiyê de daxwaza min ji saziyên mirovhez û dezgeh û komeleyên parêzerên mafên mirovan ev e ku dengê fetisandî yê girtiyên kurd bigihijînin hemû dinyayê. Bila şandeyên taybet ên xwe bişînin bo Kurdistan û herêmên din ên Îranê ku neteweyên Îranê tê de dijîn û rewşa girtiyan û girtîgehan bi çavê xwe bibînin. Her wiha bila pirsa mafê mirovan ji ber pirsgirêka Etomî a Îranê nehê jibîrkirin.

**Foad Heqîqî:**

## "Bikaranîna Tîpên Latînî Ji Bo Nivîsandina Kurdî Gellek Bi Cî Ye"



**Fuad Heqîqî, Xebatkarê RDKÎ**

Di destpêkê de ez pîrozbahiya derketina 100'mîn hejmara Agirî ji gişt rêveber û xwendevan û ogirên Agiriyê dikim, bi taybetî ez destxweşiyê dibêjime hemû wan kesan ku di Agirî de kar kirine û niha jî kar dikin.

Agirî yekemîn weşan li Kurdistana Îranê û bi taybetî di vê qonaxa xebata rizgarîxwazane a gelê Kurd di Kurdistana Îranê de ye ku bi tevahî bi devoka Kurmancî û bi tîpên Latînî çap û belav dibe. Bi vê yekê em dibêjin ku Agirî di vî warî de di Kurdistana Îranê de şorişek kiriye. Ji ber ku bikaranîna tîpên Latînî ji bo nivîsandina Kurdî gellek di cî de ye. Helbet li wir nabe ku em hest bi berpirsiyariya PDK Îranê ji bîr bikin.

Agirî di heyama wan şeş salan de kariye ku rewşekê pêk bîne ku belavokên din ên hizbî jî karekî bi wî awayî bikin.

Di rastî de Agirî kariye ji hejmara ogirên bikaranîna tîpên Latînî çend qat zêde bike. Di vî warî de xizmeta wê ji bo ziman û kultûra Kurdî cihê rêz û hurmetê ye. Şûnpêyê Agirî niha di nav pêvajoya rojnamegeriya Kurdî de bi xurtî diyar û berçav e û rolekî gellek hêja di warê dewlemendkirina ziman û toreya Kurdî de dilîze.

Her çend Agirî di vê qonaxa şoreşê de û li Kurdistana Îranê ceribandinekî nû bû (helbet Kovara Sirwe jî berê beşek ji nivîsên xwe bi vê devokê û bi tîpên Latînî belav kiribû), lê karî pêşkevtinekî berçav bi xwe ve bibîne.

**RONÎ**

Quncikek ji bo şiroveya bûyer û babetan ji xwendevanên "Agirî" re

**Ebdullah Hicab**



# Ankara, Bexda, Hewlêr

Li serdana çaverêkirî ya Serok Komarê Turkiyê Ebdullah Gul bo Îraqê, ku qirar e berî sersala Zayînî pêk were, pirsa Kurd dê di rojeva sereke de be. Biryar ew e ku Gul li ser banga Serok Komarê Îraqa Federal, rêzdar Celal Talebanî, serdana Îraqê bike û tê gotin ku dê bi xwe re şandek payebilind a aborî jî bîne Îraqê. Pirsên bazirganî û pêwendiyên siyasî yên navbera her du welatan bi awayekî fermî wek babetên cihê guftugoya navbera du welatan hatiye ragehandin. Lê, eger bi ragehandî nebe jî, dîsan her pirsa Kurd weke serêşiya herî mezin a Tirkiyê li pêwendiyên bi welatên cîran re, dê di bernameya karê Serok Komar Gul de be. Ji niha ve gotegota hindê jî heye ku Serok Komarê Îraqa Federe bi hêvî ye bi henceta wê serdanê, bi Gul re sera paytexta Herêma Federal ya Kurdistan û herweha bajarê Kerkûkê bide.

Eger serdana Gul bo Bexdayê weke mijarek asayî ya navbera du welatên cîran bê nirxandin, lê serdanek îhtimalî bo Hewlêr û Kerkûkê dê bi çavek din were temaşekirin. Her çend guman di wê çendê de nîne ku eger serdanek weha çê nebe jî, her dê qedera Kerkûk û rola Hewlêrê di pêşeroja Îraqa federal û pirsa Kurd de babetên herî giring ên basên navbera her du welatan be. Dîsan jî dema serdanek weha çê be, dê hem li ser pêwendiyên navbera Herêma Federal ya Kurdistan û Turkiyê û hem jî li ser têkiliyên navbera pêkhatiyên qewmî û netewî yên Kerkûkê bandorek berçav danê.

Niha bila carê mijara serdana rengeyî a Gul bo Hewlêr û Kerkûkê bimîne ji bo pilana karê wî û şiyana Mam Celal bo qenaet pê înana Gul. Çunku danûstanên Gul û rêveberên Kurd li Bexdayê jî dikare pêk were. Ya giring hildana perdeya li ser mebesta wan gotûbêjên rengeyî û encamên diyalogek bi wî rengî li ser rewşa herêmê ye. Gelo hêviyên Gul ji Bexdayê, û bi awayekî nerasterast ji Hewlêrê çi ne û li çavê berjewendiyê netewea Kurd re, dê ew serdan çawa be?

Ji sala 1991'an pê re, bi damezirandina birêveriya xwemalî li Başûrê Kurdistanê, hukûmetên cuda yên Tirkiyê tenê bi yek mebestê bi hukûmeta Herêma Kurdistanê û birêveberiya Kurd re danûstan kirine; bi destanîna piştevaniya Kurdan ji bo şer bi PKK'ê re. Lewma heta dema hilweşîna rêjîma Sedam û destpêkirina danûstanên di asta herî bilin a cîhanî bi rêberên Kurd re, Turkiye amade nebû di astek bilind de bi rêberên Kurd ên Başûrê Kurdistanê re rûnê. Hiloşîna rêjîma Bees û rola giring ya birêveberiya Kurd di avakirina Îraqa nû de hêdî hêdî ew raya karbidestên Turk guherî. Lê dîsan jî çavên rêveberiya Ankara bar neda bi awayek dîrekt bi cîranê xwe yê Kurd re di asta dîplomatîk de bikeve têkiliyan. Lê di dawiyê de bi mecbûrî û ji bo bidestveanîna piştgirî li şerê xwe yê li dijî PKK'ê neçar ma her çawa be riyek ji diyaloga bi Hewlêrê re veke.

Gul di wê sefera xwe de dê hewayê siyasî li Hewlêrê binirxîne, heta bizane ka gelo zemîne li şerek navxweyî re di navbera hêzên Kurd de heye an na. Di wan heyvên dawî de, Tirkiyê bi awayek sîstematîk sînorê esmanî yê Başûrê Kurdistanê derbaz kiriye û bi dehan car herêmên çiya ku guman tê kirin hinek bargehên hêzên PKK'ê lê bin, bombebaran kiriye. Rêveberiya Hewlêrê ji wan sînorbezandinan razî nîne, lê carê bi awayek tûj li hember wan gef û hêrişan de helwêst negirtiye û her ew bûye heger ku Ankara wisa bizane dê bikare bi rêya diyalogê, rêveberiya Kurd bi xwe re bike yek, heta li şerê dijî PKK'ê beşdar be.

Serokê Herêma Kurdistanê, rêzdar Mesûd Barzanî, ew girîmane(ferz) bi tevahî red kiriye ku carek din rê bide hêzên Kurd bi xwesteka cîranan bi hev re bikevine nava şerê birakujiyê. Di heman demê de Serokatiya Herêma Kurdistanê soz daye ku ji bo çareseriyek aştiyane hemû derfet û îmkanên xwe bi kar bîne. Barzanî ew soz jî daye ku dema Turkiye amade be ji bo çareserkirina pirsa Kurd li Bakûrê Kurdistanê pêngavan rake, dê hemû derfetên xwe bi kar bîne heta PKK bi yekcarî mijara şerê çekdarî li rojeva xwe derxe. Tê payîn ku agirbesta wê dawiyê a PKK'ê di wê çarçoveyê de hatibe ragehandin.

Lê hevdem digel mijara şerê bi PKK'ê re, ji bo Gul mijara hilbijartinên şaredariya li Turkiyê û Bakûrê Kurdistanê jî di rojevê de ye. Gul ê Serok Komar hema hindî erkên Serok Komariyê bi siyaset û berjewendiyên partiya xwe, AKP'ê re jî girêdayiye. Li bajarên giring ên Bakûrê Kurdistanê, weke Amed, AKP bi Partiya Civaka Demokratîk (DTP) re di nava pêşbirkêyek tund de ye. Ji bo Erdogan û Ebdullah Gul hem di asta Turkiyê û hem di asta cîhanî û bi taybet li pêwendiyên wan bi Yekîtiya Ewropayî re giring e ku bidin xuyakirin li Kurdistanê partiya wan aliyê herî xurt e. Ebdullah Gul û partiya wî her çend bi hevregirêdana qedera netewa Kurd înkar bikin jî, lê dizanin ku hevdîtina bi rêberên Kurdên Başûr re, dê li ser raya giştî ya Kurd li Bakûrê Kurdistanê bê tesîr nebe. Ew jî di wê pêvajoya hilbijartinê li Turkiyê derfetek mezin e ji bo berendamên AKP'ê li Bakûrê Kurdistanê û nava Kurdên Bakûrî ewên li Stenbol û metropolên din dijîn, derfetek zêrîn e.

Mijara din a giring di rojeva Gul de, pirsa Kerkûkê ye. Turkiye naveşêre ku heya ji destan bê dê zextê bixe ser Îraqê ku rê nede Kerkûk bikeve nava sînorê Herêma Federal a Kurdistanê. Serok Komarê Turkiyê heya niha bi caran bi nûnerên girûpên tundrev ên Turkmen re rûniştiye û li hemû hencetan, dijberiya xwe ji nasnameya Kurdistanî ya Kerkûkê re ragehandiye. Di gera wê carê de jî dê Gul wê mesajê bide rêveberên Îraqê û di nava wan de, Serok Komarê Kurd ê welat, Mam Celal.

Her weha pirsa bazirganî û xebata şîrketên Turk li Îraq û Başûrê Kurdistanê dê beşek ji bernameya gerra Serok Komar Gul be. Turkiye bi sektorên avakirinê, navmal, cil û berg û pîşesaziya biçûk bi xurtî ketiye bazara Îraqê. Qeyrana aborî ya îro li cîhanê dê ji niha û pê ve pitir karîgeriyê li ser aboriya Turkiyê danê. Lewma wergirtina garantiyê ji rêveberiya Îraqê bo berdewambûn û xurtkirina xebata şîrketên Turkiyê li Îraqê giring e.

Di vê navberê de mijara giring bo Kurdên hemû perçên Kurdistanê û bi taybet Bakûr û Başûr, bandora gerra Gul li ser pêwendiyên navbera Kurdan bi xwe û çareseriya aştiyane ya pirsa Kurd li Bakûrê Kurdistanê ye. Eger di wê gerrê de Gul daxwaz û helwêsta hevdeng û micid a rêveberiya Kurd bibîne, renge di pêşerojê de li Bakûrê Kurdistanê mijara diyalog bo çareseriya pirsa Kurd bikeve rojevê.

Ji bo rêveberiya Bexdayê û bi taybet karbidestên Kurd pirr giring e ku pirsa Kurd li Bakûrê Kurdistanê bi awayekî aştiyane bê çareserkirin. Îraqa di nava aloziyê de pêwîstî bi cîranek bihêz, lê ewle û demokratîk heye, heta bikare xwe li ser piyan bigre û demokrasiya sava ya xwe biceribîne. Û Turkiye ne dikar bihêz be, ne ewle be û ne jî demokratîk, berî ku bi awayek cidî ji rêçareyekê bo pirsa pitir ji 20 miliyon Kurdên xwe negere. Alîkariya ku Turkiye dikare di warê pêşvebirina aborî, avakirina saziyên civaka sivîl û vekirina deriyan bi ser cîhanek vekirî û demokratîk bide Îraqê, li berdêla wê, Îraq dikare li ser çareserkirina pirsa Kurd li Bakûrê Kurdistanê, û bi wî rengî demokratîzekirinê ji Turkiyê re pêşkêş bike.

Her du welatan bi awayek cidî pêwîstî bi alîkariya hev heye. Lê navenda alîkariya herî zêde tenê dikare Hewlêr be ku di heman demê de dikare bibe korîdora dîplomasiyê ji bo çareserkirina pirsa Kurd li Bakûrê Kurdistanê.

# Roja Pêşmergên Kurdistanê Pîroz Be

Di sala 1984'an de, PDKÎ roja 26'ê Sermawezê weke **Roja Pêşmergên Kurdistanê** binav kir. Sedema binavkirina vê rojê ji bo Pêşmerge, vedigere ser girtina padigana leşkerî ya rejîma Paşayetiyê li bajarê Mehabadê ji aliyê hinek çekdarên kurd di sala 1945'an de.
Em bi dil û can 26'ê Sermawezê, Roja Pêşmergên Kurdistanê pîroz dikin û serê rêz û hurmetê li hember ked, zehmet, fidakarî û canfidayiya Pêşmergên azadîxwaz ên Kurdistanê ditewînin. **Desteya Weşana Agirî**

agirî

**Paşkoya Taybet Bi Boneya 26'ê Sermawezê, Roja Pêşmergên Kurdistanê** **Hejmar:101**


# Di Binkeya Deftera Siyasî Ya PDKÎ De, Roja Pêşmergên Kurdistanê Hate Pîrozkirin



Bi armanca rêzgirtin ji 26'ê Sermawezê, Roja Pêşmergên Kurdistanê, êvariya roja 16'ê Sermaweza 1387'an a Rojî (16.12.2008), rê û resmeke hêja û berfireh bi beşdariya endamên rêberiya PDKÎ, Kadro û Pêşmergeyên partiyê û malbatên wan û gellek mêvanan hate lidarxistin.

Di destpêka şahiyê de sirûda neteweyî ya 'Ey Reqîb' hate xwendin û piştre ji aliyê pêşkêşkarek şahiyê deqîqeyek bêdengî bona rêzgirtin ji Şehîdên rêya azadiya Kurd û Kurdistanê hate ragihandin.

Piştre pêşkêşkarên rê û resmê li ser kesayetiya bilind û pîroz a Pêşmerge û rola Pêşmerge di xebata rizgarîxwaziya Kurd û diyarîkirina rojekê bi navê Pêşmerge ji aliyê PDKÎ ve axivîn. Piştre Peyama Deftera Siyasî ya PDKÎ bi vê hencetê ve ji aliyê **Kawe Behramî**, endamê Polîtbîroya PDKÎ û berpirsiyarê Komîsyona Siyasî – Nizamî ve hate pêşkêşkirin.

Piştre sirûdek bi navê 'Ey Demokrat' ji nivîsîna **Selam Îsmaîlpûr** û pêşkêşkirina Koma Hunerî a Yekîtiya Jinan û Koma Hunerî ya PDKÎ hate xwendin.

Di beşeke din a rê û resma rêzgirtin ji Roja Pêşmergên Kurdistanê de, lewha sembolîk a Pêşmergên dêrîn ji aliyê birêz **Mistefa Hicrî**, Sekreterê Giştî yê PDKÎ bi **Hîwa Mihemedî** bi nûneriya Pêşmergên dêrîn hate dayîn. Lewha han ya rêzgirtinê ji aliyê Komîsyona Siyasî – Nizamî ji wan Pêşmergan re tê dayîn ku zêdetirî 20 salan di refa xebatê de têkoşîna azadiyê meşandine.

Piştre Peyama Yekîtiya Jinên Demokrat ên Kurdistana Îranê ji aliyê **Şeyda Kemanger** ve hate xwendin.

Beşa din a şahiya pîrozkirina Roja Pêşmergên Kurdistanê, bi pexşaneke dewlemend bi navê 'Sembolî Pêşmerge' ji nivîsîn **Luqman Mêhfer** hate xemilandin ku pêşkêş bi **Hesen Şîweselî**, Pêşmergê qehreman û endamê Komîteya Navendî ya PDKÎ hatibû kirin. Pexşan ji aliyê keça ciwan **Beyan Mêhfer** ve hate xwendin û têra xwe balkêş bû û ji aliyê beşdarên şahiyê ve bi germî hate pêşwazîkirin.

Dûre straneke xweş bi dengê hunermendê Pêşmerge **Xulam Fatihî** hate pêşkêşkirin.

Di beşa din a şahihê de, Peyama Yekîtiya Ciwanên Demokrat ên Kurdistana Îranê ji aliyê **Luqman Ebdulahzade** ve hate xwendin.

Bi xwendina sirûdeke şoreşgerî ji aliyê Koma Hunerî a Yekîtiya Jinan ve şahî bêtir xemilî.

Peyama Yekîtiya Xwendekarên Demokrat ên Kurdistana Îranê jî ji aliyê **Şine Dirûdger** ve hate xwendin.

Bi dengê hunermendê dengxweş û Pêşmerge **Farûq Sultanî** û bi çepikên beşdaran şahî reng û rûyeke taybet bi xwe ve girt û kêf û xweşî kete ser lêvên Pêşmergên azadîxwaz yên PDKÎ.

Rê û resma rêzgirtin ji 26'ê Sermawezê, Roja Pêşmergên Kurdistanê bi govend û dîlana germ û berfireh a beşdaran bi coşeke mezin bi dawî hat.





# Peyama Deftera Siyasî ya PDKÎ bi henceta 26'ê Sermawezê, Roja Pêşmergên Kurdistanê



Kawe Behramî, Endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ

**Rêzdar Sekreterê Giştî yê PDKÎ! Endamên Deftera Siyasî û rêberiya partiyê yên birêz Beşdarên hêja ên rê û resma 26'ê Sermawezê, Roja Pêşmergên Kurdistanê!**

**Xelkê xebatkar yê Kurdistanê!**

Bi henceta roja dîrokî ya **26'ê Sermawezê, Roja Pêşmergên Kurdistanê**, pîrozbahiyê ji we rêzdaran û hemû xelkê Kurdistanê û hemû Pêşmergên Kurdistanê dikim.

**Hevalên hêja!**

Heke em lênihêrîneke ji dîroka derbasbûyî ya gelê Kurd bikin, em dibînin ku dîroka Kurdan tejî evraz û nişîv, serkevtin, têkşikan û rabûn e û ji bo gihîştin bi azadî û rizgariyê di nav çengên hikûmetên dîktator û dagirker de çend şoreş bi awayên cur bi cur meşandiye. Her yek ji van şoreşane di heyameke kurt û kin de hatine serkut û tepeserkirin yan bûne goriyên danûstanên zorxwazên derekî û dagirkerên serdest û xwesepandî yên Kurdistanê.

Gelê Kurd li Kurdistana Îranê, di rêya standina mafên xwe de gellek gorî dane. 63 sal xebata bêrawestan a Kurdan li Kurdistana Îranê bi rêberiya Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê, bêtirî şeş dehsala ye didome û tevî gellek asteng û kospan berbirû bûye, lê teslîm nebûye û ji xebatê nerawestaye û heta gihîştin bi stratejiya xwe dê berdewam be.

Baskê bihêz yê wê tevgerê Hêza Pêşmergên PDKÎ bûye û bi xwegorîkirin û fidakariyê, di wê heyamê de bi du sîstemên kevneperest û dîktator ên Paşatî û Komara Îslamî re, ji bo bidestveanîna mafên neteweyî ên gelê Kurd li Kurdistana Îranê xebat kiriye û niha jî bi rûmet û şanazî ve di vê pêxemê de canfidayiyan dikin, lewra gelê Kurd bi hêvî û xweziyan ve dinêre wan keç û xortên can li ser dest û xwe bextker.

Çavkaniya wê têkoşîna bêrawestan vedigere bo Sermaweza 1324(1945)an, ku weke guhartineke girîng di dîroka gelê Kurd de bi giştî û bi taybet li Kurdistana Îranê qewimî û bi wê sedemê ye ku Arteşa Neteweyî ya Kurdistanê di serdemê Komara Kurdistanê de pêk hat û piştre jî girîngîdana rêberiya tevgerê ye bi berxwedan û nerawestana Hêza Pêşmergeyên Kurdistanê di rêya xebata rizgarîxwaziya gelê me de. Ji ber vê yekê, civîna dehem a kongreya şeşem a PDKÎ di 4'ê Gelawêja 1363 (1984)'an de, di biryareke dîrokî de, 26'ê Sermawezê weke Roja Pêşmergên Kurdistanê diyarî kir.

26'ê Sermaweza îsal, 63 sal bi ser bûyera giring û dîrokî a girtina 'Şarevanî' (Padigana Leşkerî) a bajarê Mehabadê bi destê hejmarek ji çekdarên şoreşvan ên wî bajarî derbaz dibe. Di roja 26'ê Sermaweza sala 1324 (16.12.1945)'an de, asewarên serkut û tund û tûjiya rejîma dijîgelî û kevneperest a Paşatiyê li bajarê Mehabadê hate jiholêrakirin. Ew serkevtina mezin bi xwîna xortê qehreman ê Kurd bi navê **Ebdula Mîne Xalindî** ji bo gelê me hate misogerkirin û di wê rojê de azadî di beşek ji axa Kurdistanê de hate cihgirkirin û xelkê wî bajarî karîn rekê parastina ewlekarî û tenahiya hundirîn li stû bigrin.

Ew kiryara şoreşvanî bû guhartineke girîng di dîroka gelê Kurd bi giştî û nemaze Kurdistana Îranê û aqibet piştî demeke kin, avakirina Komara Kurdistanê dûre hat.

Bo cara yekemîn bû ku gelê Kurd di wê beşa Kurdistanê de bi ser çarenivîsa xwe de zal bû û bû cihê hêviya Kurdan di hemû parçeyên Kurdistanê de. Bû roja rêzgirtin ji keç û xortên leheng û mandînenas ên gel û welat, bû berjeng û sembola domandina şoreşê di gişt parçeyên Kurdistana dagirkirî de, bû nasnameya qîz û lawên canfîda û welatparêz ên Kurd û her wiha bû çepera parêzgarîkirin ji Kurdistanê û berevanîkirina maf û azadiyên Kurdan.

**Evîndarên Roja Pêşmergên Kurdistanê!**

Xebatkarên xwedan bîr û bawer ên gelê me bi çek, pênûs, dîplomasî û rêyên siyasî, ji wê rojê şûnde heta niha bona gihîştin bi armancên neteweya me xebatê dikin. Rêzgirtin ji Pêşmerge di roja 26'ê Sermawezê de, yê bûye adetek di nava xelkê Kurdistanê de û bi çaveke tejî hêviyan dinêrine xebata pêşeroja neteweya me.

Hêza Pêşmergên Kurdistanê herdem baskê bihêz yê gel û piştevanê civatên xelkê Kurdistanê bûye. Lewra ji roja 26'ê Sermaweza 1324(1945)an ve heta niha bi hezaran keç û xortên Kurdistanê bi cilên pîroz ên Pêşmergatiyê yê çûne refa karwanê Şehîdan. Serbarê vê yekê jî, bi hezaran kesên din jî ji bo domandina xebat bona rizgarî û azadiya gelê me, di refa Pêşmergên PDKÎ de berdewam in.

**Gelî rêzdaran!**

Hêza Pêşmergeyên Kurdistanê, kolekeya herî xurt a tevgera neteweyî – demokratîk a gelê Kurd li Kurdistanê ye. Ewa jî ji ber vê çendê ye ku ew hêze di nava dilê civatên xelkê Kurdistanê de serî hildaye û jiyana Pêşmerge têkel bi jiyana gel bûye. Di vê roja dîrokî de, bicî ye ku em bi kurtî balê bikşînin ser xebat û têkoşîna Pêşmerge ku di qonaxên cur bi cur ên xebatê de, serbilindane heta niha tekoşîna azadiyê dimeşînin, di xebat û berxwedan tevî du rejîmên Paşatî û Komara Îslamî de bêrewastan xebat û têkoşîna azadiyê meşandiye, Pêşmerge serbilind û rûsor e ku heta gihîştin bi mafê neteweyî yê gelê xwe jî dê wê xebata pîroz bidomîne û bo demekê jî nasekine. Xebata çekdarî a salên 1346 û 1347 (1968-1968) a Hêza Pêşmerge li dijî rejîma Paşatiyê vê yekê tîne bîra mirov ku di rewşekê de ku rejîma Paşayetiyê Îran bi girava aram û tenahiyê binav dikir û bi hezaran sîxor û ajan û Polîs ji bo parastina wê pergalê terxan kiribû, Pêşmergên xwedî bîr û bawer û can li ser dest ên PDKÎ, tilisma bêdengî û zilm û zordariyê şikandin. Şehîdên serbilind Şerîfzade û Moînî bi xwîna xwe ya paqij û pîroz, bi dagirkeran selimandin ku bi berxwedana xwe dê li hember her cure zilm û zordestiyekê bisekinin.

Di serkevtina şoreşa gelên Îranê û ji nav birina binke û saziyên rejîma Paşatiyê de, gelê Kurd bi giştî û nemaze PDKÎ, rolek bi bandor lîst. Bi vê hêviyê ku berhema têkoşîna wan piştî hiloşandina Rejîma Paşatî bicî bihê û bikarin bigihîjin hêvî û xweziyên xwe yên limêjîn ku bidestxistina mafê çarenivîsê ye. Mixabin berhema

şoreşa gelên Îranê kete destê Meleyên dijîgelî û kevneperest, lewra hewl û xebata Kurdan bêencam ma. Serbarê vê yekê ku PDKÎ weke rêberê tevgera rizgarîxwaz a gelê Kurd li Kurdistana Îranê ji rêya aştiyê ve bona gihîştin bi mafê çarenivîsê, hemû hewl û cehdek da, lê ji bo Melayên kevneperest ku Fetwaya şer li dijî gelê Kurd dabûn, hewl û cehda mirovdostane bêbandor bû.

Wan biryara kevneperestane û korane a xwe ji bo berxwedan li dijî maf û azadiyên gelên Îranê dabû. Dîsan şereke tund û ne wekhev bi ser Hêza Pêşmergeyên Kurdistanê ji bo berevanî li maf û mana gelê xwe, hate sepandin. PDKÎ, ji bo berevanî li destkevtên xelkê Kurdistanê û bona avakirina sîstemeke demokratîk û spêşverû di Îranê de, xebateke tevalî û berfireh dest pê kir. Xebata han heta niha jî didome. Xweştevîbûna Hêza Pêşmergên Kurdistanê di nav dilê civatên xelkê Kurdistanê de, serbarê vê çendê ku weke fidakartirîn qata civaka Kurdistanê tê naskirn, belku rengvedana xwestek û daxwaza xelkê Kurdistanê û rûçikê berxwedana Kurdan li dijî rejîma xwînmij û kevneperest a Komara Îslamî ye.

**Hevalên ezîz û hêja!**

Pêşmerge di heyamê nêzîk 30 salan xebata bêrawestiyan li dijî Komara Îslamî a Îranê de, tevî komplo û pîlanên cur bi cur ên wê sîstema dijî gelî xebat û berxwedan kiriye, pirraniya pîlan û komployên wê rejîmê ji aliyê hêza Peşmerge ve hatine vala û betalkirin. Pêşmerge xebat kiriye ku di çarçoveya xebatekê de ku ji bo raya giştî û kom û komeleyên mirovhez cihê pejirandinê ye, xwe biguncîne û xebata çekdarî di vê pêvajoyê de bidomîne. Parastina mafê mirovan û liberçavgirtina mafê êxsîrên şer, yek ji helwestên şoreşvanî yên PDKÎ û hêza Pêşmerge bûye ku di çepera şer de bi sedan êxsîr azad kirine. Gellek caran jî birîndarên dijmin derman kirine, weke demokratek rasteqîne ji mafê mirovan re nihêriye û tu demekê bi serkevtinan li xwe derneketiye û di êrîşên ne wekhev ên şer de tûşî bêhêvîtiyê nebûye. Şer li hember şer nekir, belkî şer di pêxema aştî û rizgariyê de weke mekanîzmek bona gihîştin bi armancên gelê Kurd meşandiye, di rastî de, berevaniyek bû li hember êrîşa neheq ku bi ser xelkê Kurdistanê de hatiye sepandin.

**Dîmenek ji beşdarên rê û resma Roja Pêşmergeyên Kurdistanê- Binkeya Deftera Siyasî ya PDKÎ**



**Xelkê Pêşmergeperwer ê Kurdistanê!**

Di meha derbasbûyî de, Komara Îslamî a Îranê ji rêya ragihandinên giştî ve, ji zimanê hinek Kurdên xapandî, li dijî xebata Pêşmerge propagandaya jehravî û dûr ji rastiyan dest pê kirriye. Bi wê armancê ku dîmenek xirab û nerast ji rûçik û kesayetiya şoreşgerane a Pêşmerge nîşan bidin. Ji vê yekê xafil in ku civatên xelkê Kurdistanê çêtir dizanin senaryoya han di rewşa niha de bona vê yekê ye ku rejîm di hundirê Îran û Kurdistanê de, pêgehên civakî û siyasî ên xwe ji dest daye û ji tev aliyekê ve tirsê berok lê girtiye. Di warê navçeyî de jî, bi sedema eşkerebûna siyaseta şandin û perwerdekirina terorîstên xwe ji bo têkdana rewşa welatên Îraq, Efxanistan, Lubnan û Filistînê, her wiha dijkiryarên raya giştî a cîhanê derbarê hewildan ji bo bidestxistina çeka Etomî û navneteweyîkirina terorê, ewane komek mekanîzm in ku dibin sedema tirs û xeterê bo ser domkirina desthilata wê rejîmê. Ji aliyê din ve, destkevtên hêza Pêşmergên Kurdistanê û rêberîkirina usûlî ya wê hêzê bona xebat û berxwedan di qonaxên cur bi cur ên xebatê de û hilbijartina taktîkan li gor rewşê, mana wê hêzên weke piştevanê serekê yê tex û qatên gelên Îranê, nemaze civaka kurdewarî, xeterek mezin yê xistiye ser rayedarên dîktator û zorxwaz. Belavkirina senaryoyan li dijî xebata serbilindane a hêza Pêşmerge û tevlihevkirina dîroka tejî rûmeta PDKÎ ji bo xwe derbazkirin ji wê kirîz û qeyranê ye. Lê dema fend û fêlan, girî, reş û ridên û sehran ber bi dawiyê ye.



Gelê Kurd niha jî weke herdem ji Pêşmeragn hez dikin, ew xebatkarên ku di rewşên herî dijwar ên xebatê de piştevan û yawerê gelê xwe bûne.

Bêguman teror û terorperwerî û binpêkirina mafê mirovan û îdamkirina ciwanan, nivîskarên Îranê û dehan kiryarên dijîgelî ên din yên rejîmê, bi xwe hin sedem in ji bo domandina xebatê û ji holê rakirina rejîma Komara Îslamî. Niha gelên Îranê bi giştî û nemaze neteweya Kurd ji qonaxekê re nêzîk bûye ku cejna şabûn û serkevtinê li gund û bajarên Kurdistanê lidar bixin. Ala Kurdistanê li bilindahiyên gund û bajarên Kurdistanê bi destê hêza Pêşmerge hil bidin. Herêma Kurdistanê berhema xebata hêza Pêşmerge ye. Êdî serdemê vê yekê serde çûye ku tenê çiyayên Kurdistanê piştevanên hêza Pêşmerge bin.

Asoya xebata hêza Pêşmerge ron e û pêngavavêtin di awayên cur bi cur ên xebatê de dê berdewam û lezgîn bibin. Lewra di roja 26'ê Sermawezê de, careke din em tevî PDKÎ û xelkê azadîxwaz yê Kurdistanê peymanê nû dikin û ji wan re dibêjin: Pêşmerge weke baskê bihêz yê gel heta serkevtin bi ser kevneperestî û dîktatoriyê dê xebat û têkoşîna xwe bidomîne û heta misogerkirina xwezî û hêviyên gel ji tekoşînê nasekine.

Di dawiyê de em bi hev re bibêjin:

Serkeve xebata bêrawestan a hêza Pêşmerge bi rêberiya PDKÎ ji bo bidestveanîna mafê Kurd di Îraneke demokratîk û federal de

Silav li Şehîdên rêya rizgariya Kurdistanê, nemaze Şehîdên Pêşmerge ên PDKÎ

Silav li girtiyên siyasî, hevçeperên berdewam ên hêza Pêşmergên PDKÎ

Silav li malbata xwe xebatkarên ku keç û xortên wan di refa xebatê de ne, yan xweştevî an ezîzeke wan di çepera xebatê de ji dest dane

Careke din 26'ê Sermawezê, Roja Pêşmergên Kurdistanê ji hemû aliyekê pîroz dikim.

Bijî Hêza Pêşmerge, baskê bihêz yê gel

Bihiloşe rejîma kevneperest a Komara Îslamî a Îranê

Serkevtî bin.

# Li Çend Dever Û Bajarên Kurdistana Îranê Roja Pêşmergên Kurdistanê Hate Pîrozkirin



Bi henceta 26'ê Sermawezê, Roja Pêşmergên Kurdistanê, endam û alîgirên nepenî yên PDKÎ bi lidarxistin çalakiyên hêja û berfireh pêşwaziya germ ji wê roja dîrokî kirin. Li pirraniya herêm û bajarên Kurdistana Îranê, endam û alîgirên nepenî ên PDKÎ bi hilkirina agir li ser bilindahiyan, nivîsîna dirûşma li ser dîwar û perdeyên taybet, belavkirin CD û tiraktên taybet ên 26'ê Sermawezê, belavkirin wêneyên rêberên şehîd ên PDKÎ û çapemenî û belavokên cur bi cur ên PDKÎ bi awayekî berfireh çalakiyên teblîxî birêve birin.

Ew herêm û bajarên Kurdistana Îranê yên ku heta niha çalakiyên taybet bi henceta rêzgirtin ji Roja Pêşmergên Kurdistanê hatine lidarxistin, ev in: **Bajarên Sine, Urmiye, Bîcar, Nevsod, Merîwan, Bokan, Mehabad, Nexede, Selmas, Seqiz, Hevşar, Ciwanro, Kamyaran.** Heta amadekirina vê raporê, di van bajarên Kurdistanê de, li pirraniya tax û kolanên bajêr û cihên giştî û herwiha herêm û gundên derdora wan çalakiyên taybet ên 26'ê Sermawezê pêk hatine.

Serbarê zext û givaşa xurt a hêzên ewlekarî û leşkerî ên Komara Îslamî bona pêşîgirtin ji rêveçûna çalakiyên pîrozkirina Roja Pêşmergên Kurdistanê, lê endam û alîgirên şoreşger biwêr ên PDKÎ bi nepenî li pirraniya bajar û deverên Kurdistana Îranê bi berfirehî çalakiyên taybet ên wê rojê rêve birin.

Hêjayî gotine ye ku bi vê hencetê, li bajarê Mehabadê li ser pira Zanîngeha Azad, aleke mezin a Kurdistanê hate hildan.

## Birêveçûna Rê Û Resma 26'ê Sermawezê Roja Peşmergeyên Kurdistanê Li Welatê Fînlandê



Roja şemî, 06.12.2008'an, rê û remek hêja bi beşdariya sedan kes ji dost û endam û alîgirên PDKÎ û malbatên wan li bajarê Vasa li welatê Fînlandê, bi armanca rêzgirtin ji hêza Pêşmergeyên Kurdistanê û xebat û berxwedana wan birêve çû. Rê û resm bi sirûda neteweyî a "Ey Reqîb" û deqîqeyek bêdengî ji bo rêzgirtin li canê paqij ên şehîdan dest pê kir. Piştre pêşkêşkarê rê û resmê, Sadiq Eskerî, bixêrhatina mêvanan kir û şûnde basek kurt derheq 26'ê Sermawezê, pêşkêşî beşdaran kir.

Piştre peyama Komîteya Giştî a PDKÎ, derheq wê rojê ji aliyê Emîr Sultanpenah ve hate pêşkêşkirin. Piştî xwendina çend helbestan ji aliyê pêşkêşkarê rê û resmê, peyama YJDKÎ û YCDKÎ ji aliyê Ejîn Rezabî ve hate xwendin.

Di beşek din a rê û resma han de, bi armanca rêzgirtin ji xebat û tekoşîna hin hevalên Pêşmerge ku berê di refa Pêşmergeyan de bûne, lohek ji wan re hate pêşkêşkirin. Hêjayî gotinê ye ku loha han ji aliyê Komîteya Giştî a PDKÎ li welatê Fînlandê ve hatibû amadekirin.

Di doma rê û resmê de pexşanek derheq Pêşmerge û di pesna Pêşmerge de, ji aliyê Fazil Sultanpenah ve hate xwendin û herwiha Qadir Qazîniya, axavtinek derheq wê rojê pêşkêşî beşdaran kir. Piştre hunermendê dengxweş Hejar Duhokî bi dengê xwe rê û resmê zêdetir xemiland.

Rê û resma han heya demjimêr 1'ê şevê bo heyamê 6 demjimêran dom kir.

## Li Welatê Norwêjê 26'ê Sermawez, Hate Pîrozkirin

Roja yekşem 14.12.2008'an, bi hinceta 26'ê sermawez, (16'ê Çiliya Pêşîn) Roja Pêşmergên Kurdistanê rê û resmek bi coş, ji aliyê komîteya PDK Îranê li Norwêjê bi hevkariya her du rêxistinên YJDKÇÎ û YCDKÎ birêve çû. Di rê resma han de peyama Komîteya Giştî a Partiya Demokrat ji aliyê Seyîdmesûd Nasirî ve hate xwendin.

Herwiha peyama partiyên Kurdistanî û Îranî di welatên Norwêjê ve ji aliyê rêzdar Hogir Kavanî ve hate xwendin.

Piştre çendîn helbest, pexşan û sirûd bi vê hincetê hatin pêşkêşkirin.

Rê û resma bi dîlan û govendê bi dawî hat.



**Ebdulrezaq Muradazer:**

## "Bila Agirî Pitir Girîngiyê Bide Çand Û Hunera Kurdî"


Ebdulrezaq Muradazer Kadroyê PDKÎ

Agirî mîna weşanek siyasî, civakî, hunerî û rewşenbîrî di vî temenê kurt yê xwe de kariye xizmetek berbiçav bi ziman û çanda Kurdî bi taybet rastnivîsa latînî bike û bi vê çendê jî gellek hevkar, xwendevan û hogiran bo aliyê xwe rabikişîne.

Agirî bûye pira pêwendiyan di navbera PDKÎ û civatên xelkê Kurdistanê li her çar perçeyan û bi giştî di gellek welatên cîhanê de. Her wiha rewş û pirsgirêkên Kurdên Rojhilatê bi raya giştî bide nasîn.

Cihê keyfxweşî û şanaziyê ye ku bo cara yekem weşanek siyasî, civakî û çandî û hunerî bi rastnivîsa latînî bi piştevaniya PDKÎ li Rojhilatê Kurdistanê dest bi weşanê kir û di midehek kêm de gellek gavên baş û erênî bavêje.

Pêşniyaza min ev e ku Agirî pitir girîngiyê bi çand û hunera Kurdî bide. Ji ber ku her neteweyek ji rêya çand û hunera xwe ve tê nasîn. Her wiha rûpelek taybet bi nûçe û mijarên werzişî(spor) bihê terxankirin, heya ku ew qat jî xwe di Agirî de bibînin.

Derçûna hejmara 100'an ji we û hemû xwendevanên we pîroz dikim û hêviya serkevtin û berdewamiyê bo we dixwazim.

**Hişyar Ehmedî:**

## "Agirî Demekê Tevlî Ragihandina Kurdî Bû Ku Serdemê Nû Erkên Qurs Û Giran Xistiye Stûyê Çapemeniya Kurdî"


Hişyar Ehmedî, Kadoyê PDKÎ

Ez pîrozbahî, destxweşî û mandînebûnê dibêjim hemû ew kesên ku bi her awayekê di belavoka Agirî de, zehmet kişandine.

Weke pirraniya belavok û çapemeniyê din yên Kurdî, Agirî jî jidayîkbûya hewcehiyeke demê bû. Ew pêwîstiya demê ku bi serdemê berbirûbûna medyayê bi nav û deng e. Yanî serdemek ku erkeke qurs û giran xistiye stûyê belavok û rojnamevanên Kurd û em dikarin bibêjin erkên weşana Agirî jî li gor derfet û bandora karkirina wê ya çendqatî beşek ji weşanên din e, lewra em dibêjin erkeke çendqat zêde, em rast wê xala girîng destnîşan dikin ku divêt rojnamegeriya Kurdî li ser wan bixebite, anku têkoşîna rojnamegeriya Kurdî divêt ji bo me Kurdan weke çepereke xebata siyasî, civakî, kultûrî û wd... be. Bi xweşî ve, her çiqas li gor sirûştê kêmasî hebûye, lê tevî wan kêmasiyan jî, di şopandina risalet û wezîfeyên xwe de kêmxemî nekiriye.

Weke rexne û pêşniyar jî, ya bo min balkêş e, rastnivîsîna Agirî ye, ewa tiştek normal e ku her rastnivîsîneke hinek sûd û qazanc û herwiha xisar û ziyan heye ku eva rastnivîsîna rojnameya Agirî jî bi xwe ve digire.

Di vê derbarê de ez bi hewce dizanim li ser qazanc û ziyanên vê rastnivîsînê bi her awayekê ronkirin û perwerdehiya zêdetir bihê kirin.

**Nisredîn Sîlvaneyî:**

## "Ez Wek Xwendevanekî Agirî'yê, Dilgeş Im Ku Karî Ye Di Nav Rûbarê Wêje, Çandî, Siyasî Û Hunera Kurdî De Cihê Xwe Bigre"

Derketin û weşana Agirî niqte guherînek û her wisa pêwîstiyek dîrokî bû, ji bo wê yekê nirxandina wê jî pêdivî bi şirovekirinek taybetî heye, ku eva ne mijara îro ye.

Ez wek xwendevanekî Agirî'yê, dilgeş im ku karî ye di nav rûbarê wêje, çandî, siyasî û hunera kurdî de cihê xwe bigre, her çend di destpêkê de wek pênaseyek ji bo herêma Bakurê Rojhilata Kurdistanê derket, lê karî di demeke nêzîk de cihê xwe di nav medyaya kurdî de veke.

Agirî jî mîna hemû rojname û kovarên kurdî xwediyê hindek kêmasîyan e, lê mixabin ji ber nebûna zimanek formî û derfetên pêdivî, ev jî xwe dispêre devoka eşîrî. Hêjayî gotinê ye ku Agirî dibe xwedî ji zarava Serhedê yanî zarava herêma xwe derkeve. Di dawiyê de ez destxweşiyê ji hemû nivîskar û rêveberên Agirî'yê dikem û serkevtinê ji wan re dixwazim.

**Nisredîn Sîlvaneyî**
**Ustraliya, Perth**

## Şiroveya Peyvên Siyasî



**Berhevkar: Omîd Esxeran**
**omid_anbi@yahoo.com**

# BAYKOT

Têgiha han ji wateya qedexekirinê hatiye û merem ji vê çendê, metodek ji xebata siyasî û aborî ye ku kes, sazî, dewlet yan aliyek hemû pêwendiyên xwe tevî kes, rêxistin yan jî dewletek din qut dike, dibirre.

Di rastî de peyva Baykotê ji navê efserek Birîtaniyayî bi navê "Baykot" hatiye wergirtin ku di dijberiyên navbera Îngilîs û Îrlandayê de beşdarî kir û ji rêya qedexekirina berheman ve, dest avête xebatek neteweyî ji bo serxwebûna Îrlandê û her ji wê demê vir ve metoda han bi navê wî ve hatiye binavkirin.

Di yasaya navneteweyî de, baykot pêkhatî ye ji vê çendê ku yek yan jî çend dewlet pêwendiyên bazirganî û darayî ên xwe tevî yek yan çend dewletên din qut dikin.

Dema ku tê gotin xelkê welatekê berhemên biyanî baykot kirine, eva tê vê wateyê ku ew berhemên han nakirin yan jî dema ku tê gotin xelkê ajanek baykot kirine, eva bi vê wateyê ye ku ew têkiliya wî/ê nakin.

Piştî şerê yekem ê cîhanî, baykot yan jî qedexekirina pêwendiya aborî ji aliyê Komeleya Welatan ve li dijî çend welatan hat bikaranîn. Di Carnameya Gerdûnî ya Saziya Neteweyên Yekbûyî de jî baykot weke alavek ji bo ewlekirina aştiyê di cîhanê de hatiye liberçavgirtin. Rohn û eşkere ye ku baykot weke şûrek dudev e, him dikare pêşketî be û him jî dikare kevneperestane be. Eva jî girêdayiyê vê çendê ye ku li dijî çi kesek yan jî bona çi armancekê tê bikaranîn û berjewendiyên çi kesekan dabîn û misoger dike?

Bi dirêjahiya dîrokê, gellek caran metoda han hatiye bikaranîn. Bo mînak em dikarin îşarê bi baykota berhemên Îngilîzî ji aliyê Gandî ve ji bo xebat li dijî kolonyalîzma Birîtaniyayî bikin, yan jî baykota firotina petrola welatên alîgirê Îsraîlê ji aliyê hin welatên Erebî ve di sala 1973'an de û di van salên dawiyê de jî NY'ê wek cezadanek li dijî welatên ku yasayên vê saziyê binpê dikin bikar aniye. Bo mînak em dikarin qala dorpêça aborî a Afrîqaya Başûr bikin ku ji ber siyaseta cudahîdanîna regezî dimeşand û herwiha dorpêça aborî a Îraqê û qedexekirina firotina petrola wî welatî ji ber êrîşa wî welatî bo ser welatê Kuweytê û binpêkirina carnameya Neteweyên Yekbûyî bikin.

**Çavkanî: (Ferhengî Ramiyarî Nîga)**
**Azad Weledbegî**
**(Danêşnamêyê Siyasî) "Politicial Dictionary"**
**Daryûş Aşorî**

# ÎDZ, serjêriyek Bêdawî

**Luqman Ebudulahzade**



HIV, nexweşiyek Vîrûsî ye ku ji rêya vîrûsa "HIV"yê ve diçe nava laşê mirov û jê re "AÎDZ" jî tê gotin.

Vîrûsa han hêdî hêdî sîstema berevaniya laşê mirov jar dike û têk dide, bi terzekê ku di heyamê çendîn salan de mirovan tûşî dehan nexweşiyan dike û di dawiyê de jî dibe sebebê mirina wan.

Dema ku vîrûsa "HIV"yê, diçe nava laşê mirovan, renge heya kuştina mirovan, 10 salan dom bike. Diyare di vê heyamê de kesê tûşbûyî bi vê nexweşiyê bi awayekî rûyekî sax e û dikare kar û erkên xwe ên rojane bi rêk û pêkî encam bide.

Yekemîn nîşaneyên nexweşiya Îdzê di Îranê de vedigere bo sala 1987'an, ku di laşê zarokek 6 salî de hate dîtin.

Ji wê demê şûnde, hejmara kesên tûşbûyî bi nexweşiya "HIV" (AIDS)ê di Îranê de roj bi roj jorde diçe.

Li gor serhejmariya vê dawiyê ku ji aliyên Wezareta Tendurustî a Îranê belav bû, hejmara kesên tûşbûyî bi nexweşiya Îdzê di vî welatî de nêzîk 16 hezar kesan hate ragihandin. Lê hinek ji karnasên vê warê, hejmara tûşbûyan li Îranê nêzîkê 100 hezar kesan texmîn dikin.

Nexweşiya Îdzê, çaremîn nexweşiya bi xeter di cîhanê de ye ku dibe sebebê mirina mirovan û niha pitir ji 40 milyon kesan di cîhanê de tûşî vê nexweşiyê hatine.

Di Îranê de %57/4 ji nexweşiya Îdzê ji rêya bikaranîna madeyên hişber bi taybetî bi mifahwergirtin ji sorengên(derzî) hevbeş ve tûşî mirovan dibe.

Herwiha %32/7 jî di encama liberçavnegirtina sedemên nenaskirî û xemsarî û girîngînedana Wezareta Tendurustiya Îranê bi vê warê, tûşî nexweşiya Îdzê hatine.

Herwiha %7/8 jî li encama têkiliyên zayendî ve rastî nexweşiya han hatine.

Li gor serhejmariyan, pirraniya nîşaneyên tûşbûn bi nexweşiya "HIV"yê, anku %75 di nava grûpên temenî ên 15- 49 saliyê de tên xuyakirin.

**Rêyên veguhastina nexweşiya "HIV"yê:**

- Zêdetirîn rêya veguhastina vîrûsa Îdzê di cîhanê de ji rêya têkiliyên zayendî(cotbûnê) tevî kesên tûşbûyî bi nexweşiya "HIV"yê ye.
- Têkelbûna xwînê ji rêya bikaranîna alav û amûrên tûj bi awayekî hevbeş weke: Tîx û derzî, xalkutan, bikaranîna sorengên hevbeş û ....



- Pêwendiyên zayendî bê mifhwergirtin ji kandomê.
- Xwîndan û xwînwergirtin, (ger xwîn tûşî nexweşiya îdzê hatibe)
- Li rêya jina du canî bo zarokê/a wê.

**Çima ciwan pitir tûşî nexweşiya han tên?**

Her weke me di destpêka vê mijarê de bas kir, bêtirî %57/4 ji xelkê Îranê ji rêya bikaranîna madeyên sirrker tûşî nexweşiya han dibin.

Li gor serhejmariyên fermî, li Îranê nêzîk 3 milyon kes tûşî madeyên sirker hatine ku hejmarek zaf ji wan di temanê 15 heya 25 saliyê de ne.

Sedemên tûşbûn bi madeyên hişyber gellek in, weke:

Xemokî, bêkarî, pirsgirêkên civakî, pirsgirêkên malbatî, xirabbûna rewşa aborî û gellek sedemên din...

**Berfirehbûna nexweşiya Îdzê ji rêya bikaranîna hebê extasê:**

Encama lêkolînan dane eşkerekirin ew ciwanên ku heba Extasê bikar tînin, zêdetir ber bi têkiliyên zayendî ve tên rakişandin.

Bi kurtî ew fakter û sedemên girîng ku ciwanan zêdetir dixe nava xetera tûşbûn bi nexweşiya "HIV"yê, bi awayê jêrîn e:

- Koçkirin û dûrî ji malbatê: Pirraniya ciwanên ku bona domandina xwendinê yan peydakirina kar û pîşeyekê ji malbat û cihê akincîbûna xwe dûr dikevin, bi terzek ji terzan tûşî vê nexweşiyê dibin. Bi taybetî ger wan tu agahiyek derheq nexweşiya han tune be.
- Guhertina çawaniya mifahwergirtin ji madeyên sirker, (yanî ji kêşana van madeyan ve bibe tezrîqkirin û bikaranîna madeyên sirker ji rêya sorengên hevbeş).
- Xirabbûna rewşa aborî û civakî, bi taybetî hebûna betalî û bêkariyê. Di lêkolînekê de ku di sala 2005'an de, ji aliyê yek ji navendên tendurustiyê ve hatiye encamdan, hatiye eşkerekirin pitir ji %46 ji kesên ku tûşî madeyên siker dibin, bêkar in.

# Mihemedsidîq Kebûdvend Nameyek Ji Sekreterê Giştî Yê RNY Re Şand

**Serokê girtî yê Rêxistina Mafê Mirovan li Kurdistanê, Mihemedsidîq Kebûdvend ku niha di girtîgeha Êvîn a Tehranê de ye û bi 11 sal cezayê girtîgehê hatiye mehkûmkirin, nameyek ji Sekreterê Giştî yê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, "Ban Ki-moon" re şand. Deqa nameya Kebûdvend bi vî awayî ye:**

**Ji bo Sekreterê Giştî yê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, rêzdar "Ban Ki-moon"**

Beşdarî û nifûza hinek dewletên binpêkerên mafê mirovan di Konseya Mafê Mirovan ya Neteweyên Yekbûyî de û berlêgirtina wan bona hilgirtina her cure gav û kiryareke erênî di vê Konseyê de, ji bo pêşîgirtin ji binpêkirina mafê mirovan di cîhanê de, parêzerên mafê mirovan, nemaze berevankerên Kurd û Îranî nigeran û bêhêvî kiriye. Serbarê vî halî, di vê derbarê de Komîteya Sêyem, Komîteya Civakî, Însanî û Çandî ya Koma Giştî ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî vê dawiyê derheqê binpêkirina mafê mirovan li Îranê biryarnameyek der kiriye û naverok û kakila giştî ya wê biryarnameyê mixabin pûte û baldan bi binpêkirina mafê mirovan li Kurdistanê û pêpeskirina mafên netewe û kêmaniyên neteweyî û qewmî ên Îranê hatiye jibîrkirin.

**Birêz Sekreterê Giştî**

Hûn dizanin ku nîvek ji nifûsa welatê Îranê, netewe û kêmaniyên neteweyî û zimanî pêk tînin ku Qanûna Bingehîn a Komara Îslamî hebûna wan û mafên têkildar bi hebûna wan bi awayekî fermî înkar kiriye. Di nava qanûnên hakim de, tevî bi fermî nenaskirina netewe û kêmaniyên neteweyî, bi awayekî eşkere heqê hebûn û parastina nasnameya neteweyî, zimanî û çandî a aliyê kêm nîvek ji xelkê Îranê hatiye înkarkirin.

**Birêz Sekreterê Giştî**

Gelê Kurd li Îranê serbarê vê yekê ku di warê nifûsê de sêyemîn neteweya niştecih di Îranê de ye, lê hebûn û nasnameya çandî, zimanî û siyasî a wî bi awayekî xemgîn ber bi navçûnê diçe. Ev xelke bi salan e selîba xwe li ser milê xwe dikişînin, ji serkut, cudahîdanan û zilm û zordariyên mezin û êş û eleman dikişînin, tu maf û hiqûqeke wan yê siyasî, çandî û aborî nine û ji wan mafan bêpar in, tu beşdariyek di rêvebirina welat de tu ninin û heta di rêvebirina kar û barên navçeyî jî nahên beşdarkirin. Partî û rêxistinên siyasî yên Kurd îcaze û izna çalakiyan tu ninin û heta rêxistinên nedewletî û nesiyasî weke Rêxistina Mafê Mirovan li Kurdistanê tevî serkutkirinê berbirû ne.

**Rêzdar Sekreterê Giştî**

Gelê Kurd li Îranê ku rastî tepeserkirinên bêrehmane hatiye û gellek êş û derd kişandine û pirr nirx jî dane, serbarê vê çendê ku tenê kêmtirî %15 ji nifûsa Îranê pêk tîne, lê nîvek ji tîrbarankirî, îdamkirî û goriyên serkut û çewisandinên siyasî ên van salên dawiyê li Îranê ji xelkê Kurd bûye û vê gavê jî bêtirî %50 ji girtiyên siyasî û sivîl ku Komara Îslamî wan bi girtiyên '**ewlekarî'** û '**dijî şoreş'** binav dike, Kurd in.

Niha dehan kes ji girtiyên kurd bi xetera cezaya daliqandinê re berbirû ne an li benda birêveçûna biryara îdamê ne, yan hejmareke zaf ji wan bi buxtan û tawanên bê bingeh û ne rast, bi hepsên gellek giran û qurs hatine mehkûmkirin.

**Cenabê Sekreterê Giştî**

Xelkê Kurdistanê û parêzerên mafê mirovan li Kurdistanê çavnihêriya vê yekê dikin ku Civata Giştî û komele û dezgehên parêzerên mafên mirovan, mafên neteweyan û kêmaniyên netewî û qewmî di Îranê de, nemaze rewşa binpêkirina mafê mirovan li wan deverên Îranê ku neteweyên Îranê lê dijîn, weke Kurdistanê, ku di rewşeke pirr xirab û aloz de ne, berçav bigire û li benda vê yekê ku cenabê we pêşgîriyê ji domkirina pêvajoya xurt a binpêkirin û êrîş bo ser mafên xelkê Kurd û kêmaniyên neteweyî ên çewisandî di Îranê de bikin.

**Birêz Sekreterê Giştî**

Parêzerên mafên mirovan li Kurdistanê herwiha li dor binpêkirina mafê mirovan di Îranê de û domkirina wê pêvajoyê, nemaze di van xalên jêr bi xurtî nigeran in:

- Meşandina berfireh a îdaman, nemaze daliqandina nûciwan û girtiyên siyasî
- Meşandina îşkenceyên fîzîkî û ruhî di ragirtgeh, girtîgeh û navendên ewlekarî û polîsî
- Meşandina îşkenceyên qanûnîkirî yên weke birrîn û jêvekirina endamên laş, kevirbarankirin û qemçîlêdan û lêdan û kutanên bedenî
- Domkirina ne wekheviyên hiqûqî, qanûnî û ne qanûnî di navbera jin û mêran de
- Bê hiqûqiya girtiyan, bi taybet nebûna îmkana vê yekê ku girtî bikarin berpirsiyarên dadê bibînin û destpêregihîştin bi wan, nebûna pîvan û standardên dadê û herwiha nebûna destpêregihîştina girtiyan bi parêzeran
- Bê hiqûqiya kêmaniyên olî û tab û tehemûlnekirina ramanên ne olî û meşandina ferq û cudahîdanan derheq pêrewên olên din, weke Suniyan
- Bê hiqûqiya kêmaniyên netewî, qewmî û zimanî
- Azadnebûna çalakiyên siyasî û sivîl û saziyên sinfî, xwendekarî û karkerî û jinan, nemaze bê hiqûqiya kesên ku bawerî bi cudahiya ol ji hikûmetê hene
- Pêşîgirtin ji azadiya gotin, raman û çapemeniyê û serkutkirina azadiyên sivîl
- Şopandina xelkê ji aliyê Polîs û dezgehên dadê ve û azar û ezyetkirina çalakên sivîl û siyasî û parêzerên mafê mirovan

Cenabê Sekreterê Giştê, parêzerên mafên mirovan li Kurdistanê û Îranê daxwazkar in ku Rêxistina Neteweyên Yekbûyî û sazî û komeleyên navneteweyî ên mafên mirovan, balê bidin ser rewşa binpêkirina mafê mirovan li Îranê û bona bidawîanîna bi domkirina rewşa nebaş a mafê mirovan û pêşgîrî tevî binpêkirina azadiya mafê mirovan û hevkarî bi demokrasiyê di Îranê de gavan bavêjin û mekanîzm û rêçareyan peyda bikin.

**Mihemedsidîq Kebûdvend**
**Tehran / Girtîgeha Êvînê, 12.12.2008**

## Rojeva Civakê

### 376 Kesên Tûşbûyî Bi Nexweşiya "HIV"yê, Di Parêzgeha Kurdistanê De Hatine Nasîn

**Agirî- Beşa Civakî**

Karbidestekî Zanîngeha Zanistên Bijîşkî a Parêzgeha Kurdistanê ragihand: Heya niha di parêzgeha Kurdistanê de 376 kesên tûşbûyî bi nexweşiya îdzê hatine nasîn.

**Ferzad Bîdadpûr,** di vê derheqê de got: 310 kes li Sine, 24 kes li Kamyaranê, 18 kes li Seqizê, 14 kes li Qurwe, 7 kes li Bîcarê, 2 kes li Bane û 1 kes jî li Merîwanê hatine nasîn ku tûşî nexweşiya îdzê bûne. Navhatî herwiha eva jî piştrast kir ku heya




niha 2800 kesên tûşbûyî bi vîrûsa îdzê di parêzgeha Kurdistanê de jiyana xwe ji dest dane.

Li gor rapora nûçegihanê "Fars", temenê pirraniya kesên tûşbûyî bi nexweşiya îdzê di Kurdistanê de, di navbera 15 heya 30 saliyê de ne ku %93/7 ji wan mêr û %6/3 jî jin in. Her sal di Îranê de 1 heya 7'ê Çiriya Paşîn, bi heftiya Îdzê hatiye binavkirin û li gor gotina cîgirê Tendurustiya Zanistên Bijîşkî a Kurdistanê, îsal Wezareta Perwerdeya Parêzgeha Kurdistanê xwe ji lêdana zenga "HIV"yê di nava dibistanan de parastiye.

Li gor gotina navhatî berê lêdana zenga îdzê di dibistanan de, bandorek erênî derheq agahdarkirina xwendekar û malbatên wan ji xeterên nexweşiya "HIV"yê hebû.

Bi liberçavgirtina jordebûna asta kesên tûşbûyî bi madeyên sirker û bikaranîna vê madeyê ji rêya sorengên hevbeş di Kurdistanê de, bêşik hejmara kesên tûşbûyî bi nexweşiya îdzê di Kurdistanê de ji hejmara îşare pêkirî zêdetir e.

***

# ÇAND ÇI YE ?

ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com



Çand, heyîneke neteweyî ye. Her neteweyek, xwediyê çandeke xwe ya taybet e. Li ser rûyê erdê bi qandî hejmara neteweyan hejmara çand û kevneşopiyan heye.

Çandek ku ji hemû reng û neteweyên dinê pêk hatibe an sinc û exlaqên tevê mirovan di xwe de bihewîne, nîn e. Ji bo wê, her çandek bi nasnameya xwe ya arizî derdikeve holê û xwe bi rengê xwe yê neteweyî dide nasandin. Bo nimûne; gelek wekî çanda rojhilat, çanda rojava, çanda îslamî, çanda humanîst, çanda sosyalîst, çanda çandiniyê, çanda pîşesaziyê, çanda hengirî(aqlî), çanda nigaşî û hwd têne navandin û sînordarkirin. Belê bi rastî ev yek pênas ne di cî de ye. Çimkî çand kirûyeke neteweyî ye. Ji bo ku tevlîhevî çê nebe, divê ku ev têgîn tenê ji bo çanda neteweyî bê bikaranîn û peyva çandê jî tenê bi vê mebestê bête bilêvkirin. Çandek ku li derveyî çandê be an di ser çandê re be nîn e. Çanda ku her gav wekî "çanda kozmopolît" tê binavkirin, ne tu çand e. Heta bê çandî ye û bi awayekê jî tunebûna çandê nîşan dide. Çimkî çand hebûneke neteweyî ye. Û tiştê ku neteweyekê dike netewe çand e.

Çand, heyîneke resen û xweser e û ji ber ku ji lewn û bizavên neteweyî pêk tê dexmeya xwe li hemû tevgerên afirandinê dide. Ziman, wêje, huner, dab, nêrît, sinc û exlaqên civakê hemû li gora çandê teşe digire. Çand, li ser riknê xwebûn, sergevezî, behre, gêrûf, berek, pêrgîn, ayende, xislet û şêwazên neteweyî ava dibe. Çand, tucar lasakeriyê(teqlîdkeriyê) napejirîne. Çand, ne bêkesayetîbûn e, bervajî wê xwedîkesayetî bûn e.

Çand, heyîneke siruştî ye. Ji xwezaya civak û komeleyê pêk tê; bi awayekî siruştî dijî û dicivire. Ne li gora dilê mirovan, li gora rê û rêbazên xwe yên xwezayî dirûv digire. Her wiha çand, heyîneke zindî ye jî. Wekî dareke gewremend her gav şax û guliyan ber dide û diperise. Wekî robareke bê ser û ber diherike. Çand, ne tiştekî ketberê ye ku li devreyê jiyanê bimîne an dûrî civakê bikeve. Ew, her tim tevlî jiyan û civakê dibe û pê re diguhere û dikemile.

Çand, heyîneke domandar û dîrokî ye. Xisleteke çandê ya domandar û dîrokî heye. Navber û qutbiriyê napejirîne. Wekî zincîra ku ji xelekên curbecur pêk hatibe, ji rabirdûyê ber bi diwarojê de dadibe. Ne berhemeke îroyîn an gaveke rabirdûyê ye ku bê sînordarkirin an birrîn. Seyr û çûyineke wê heye. Wekî îro, dahatûya wê jî girêdayî vê seyr û çûyinê ye. Hêmayên çandê, ne bi carekê re ji asîman dadikeve û ne jî li ser erdê hêşîn dibe. Çand, xêz û encama derbirîna gihîştin û peresanên neteweyî ye. Rewşa ziman, wêje, şano û hunerê ya îroyîn, girêdayî peresîna çandê teşe digire. Hêmayên çandê, her yek ji wan wekî xelekeke zincîra geşedaniya neteweyî, pev têne girêdan û hin bi hin hev û din temam dikin. Hemû hêmayên çandê pevre di nav têkiliyeke xurt û bêdeman de ne. Wekî din jî, xislet û taybetiyên hêjahiyên çanda neteweyî, hemû dişibine hev. Û hemû di nav muwazî û rastînheviyeke xurt de ne.

Li ser rûyê erdê bê hejmar çand û netewe hene. Di navbera van neteweyan de gellek pêwendiyên komalî û navneteweyî pêk tên. Heta di navbera çanda van neteweyan de gellek caran danûstandin û hevhîkariyên xurt jî pêk tên. Hemû çand, ji van danûstandin û têkiliyên hev ên bêxisar sûd û fêdeyê werdigirin. Belê di navbera çand û şaristaniya neteweyan de cudayetiyeke pirr mezin heye. Çimkî çand û şaristanî ne heman tişt e. Şaristanî, xwe dispêre zanyariyên meraqdariyê yên kesane û her wiha xwe bi zanist û teknolojiyê û behrem û çalakiyên ku zêde bêhna neteweyê jê nayê ve girê dide. Çand, ji hestên neteweyî û zanyariya civakî pêk tê. Neteweya şaristaniyê nîn e belê her netewe xwedî şaristanî ye. Şaristanî, çeqa hewm û danehevên hişmendî û zanyariyên gerdûnî ye. Heta teknîkî ye; ango tevahiya sazî û dezgehên teknolojiyê ye. Belê çand, muhesela dab û nêrît, gerdîş û kevneşop û bastaniyên neteweyî ye. Dîsa jî di navbera netewe û şaristaniyê de hevhîkarîyeke xurt û lêkneker heye.

Çand, ne malê kesên takemaf û servedar(biîmtiyaz) û ne jî ayidê tu kom û komiçkan e. Ew, malê civak û komeleyan yê hevpar e. Ji bo endamên neteweyekê wekî niştimaneke hevber û yeksan e. Bi qandî mafê kesên îroyîn, mafê bav û kalan, nevî û peyrewan jî di wê çandê de heye. Çand, koma sazî û sazûmanên komalî û neteweyî ya hemûyan e.

*Kaniya Helbestan*

# ZIMANÊ ME



**Eskerê BOYÎK 05. 12.2008**

Zimanê me, zimanê me,
Tuyî erd û esmanê me,
Tuyî derd û dermanê me,
Şûrê destê şervanê me.
Zimanê me.

Berfa serê Sîpanêyî,
Kûraya behra Wanêyî,
Hêrsa Firat û Diclêyî
Ruh û rêyî, şîrê dêyî,
Zimanê me.

Zimanê me bextê meyî,
Xemil û rihal, rextê meyî,
Li nav neyar-nexweza da,
Dewlet, tac û textê meyî,
Zimanê me.

Zimanê me kela çiyanî,
Antêxê nav dewrananî,
Şewqa Şemsê meyî nûrîn,
Agir-alav û vûlkanî,
Zimanê me...

Tu ronaya çavê meyî,
Bîna li ber devê meyî,
Emê hebin, em namirin-
Heta tu li dinê heyî,
Zimanê me.

Zimanê me, zimanê me,
Tuyî erd û esmanê me,
Tuyî derd û dermanê me,
Çeka destê şervanê me,
Zimanê me...

# Bi Sedema 100'mîn Hejmara Weşana Agirî

Di despêkê de dixwazim germtirîn pîrozbahiyên xwe pêşkeşî birêveber, nivîskar û heval û hevkarên weşana Agirî bikim ji bo 100 car newestan û 100 car keddan û berxwedanê û ji bo 100 car dahênan û geşepêdana naverok û weşana Kurdî. Ger mirov bixwaze pêvajoyeke civakî pênase bike, berî ku bixwaze ser zemîne û sebebên pêkhatina wê biaxive, bandora wê pêvajoyê dide ber lêkolîne. Ji ber ku ya ku wateyê dide pêvajoyê, ne bingeh û hegerên dirustbûna pêvajoyê ye, belkî ewa bandora pêvajoyê ye ku mirov han dide ser zemîne û bingeha pêvajoyan lêkolînê bike. Lewra piştî 100 hejmar û 6 sal kar û xebata weşana Agirî, em dikarin bi keyfxweşî bandora wê li ser weşana giştî ya Kurdî û rêxistinî û partiyê bibînin.

Agirî li pencereyek nû bû bo Partiya Demokrata Kurdistana Îranê ber bi berfirehkirina xizmet bi çanda netewî û hizra giştgirkirina xebat bo nasnameya neteweyî ya gelê Kurd. Ew pencereyek nû bû bo Rojhilata Kurdistanê ku diyarde (fenomen) û rojeva wê parçeya welatê me yê bindest bi awayekî din û bi şêwazek din bi pirraniya xelkê Kurdistanê ku bi zaraveya Kurmanciya jorîn diaxivin, bide naskirin. Agirî dergehek nû bû ji bo ku xebata mixabin bi xedir hatînaskirî ya Partiya Demokrata Kurdistana Îranê bi xelkê Bakûr û perçên din ên Kurdistanê, Kurdên Soviyeta berê û Kurdên ku çendîn nifş e li diyasporayê dijîn, bide naskirin.

Heya berî jidayîkbûna Agirî, Kurdên welatên Soviyeta berê PDKÎ nas nedikirin, pirsa Kurd li Rojhilatê Kurdistanê li gor siyaset û piropagandeyên neyarên xwestên wê beşê nas dikirin û bi vî awayî di rastî de ambargoyek zanyarî li ser Rojhilatê Kurdistanê ji aliyê hin hêz û rêxistinan ve hatibû sazkirin û rewşa wê perçeyê Kurdistanê beravajî didan nîşandan.

Agirî ew ambargoye şikand û roj bi roj çeperên danezanîn û nasandina rewşa Kurdan li Rojhilata Kurdistanê zêdetir dide naskirin. Xelkên beşen din ên Kurdistanê yên ku hizr û ramanên PDKÎ bi hizr û ramanên xwe dizanin, ên ku li ser vê bawerê ne ku rêçareya doza Kurd birêvebirina ramyariyek evroyî, modern û berpirsane ye û ji bo ku Kurd rizgar bibin, hewce ye mirovên Kurd li zêhniyeta bindestiyê rizgar bibin û bi vî awayî rizgariya Kurdan rizgariya netewên derdorê digel xwe tine, destê diyalogê bi aliyê PDKÎ rakişandin û PDKÎ jî li azmûn û tecrûbeyên xebata medenî, rewşenbîrî û civakî û rêxistiniyên beşên din mifa dît.

Di wê mêzegehê de lidayîkbûna Agirî bûyerek dîrokî bû, hewcehiyek civakî, siyasî û kultûrî bû û ew hewcehiyene li gor wan bandorên ku serê qala wan kirin, ciwantir tên femkirin û berfirehtir tên dîtin. Lewma di cihê xwe de ye PDKÎ şanaziyê bi wê weşanê û heval û rêveberên wê bike.

Weşana Agirî yekem weşan e ku li Rojhelata Kurdistanê bi awayekî rêxistinî tê weşandin, ew karê han giraniya PDKÎ di nav civaka Kurdan bi giştî wek hêzek xwedî berpirsayetiya netewî û dîrokî de zêdetir dike û li gor wê jî erk û berpirsiyariya partiyê li hember bizava weşan û rojnamevaniya Kurdî nemaze ziman û çanda Kurdî erkdartir dike.

Agirî weşanek heta astekê ciwan e û tenê 6 sal ji despêka wê derbaz dibe, lê ji roja lidayîkbûna wê weşanê nîşanên pêgehiştin û bilûxa siyasî û çandî tê de xuya bû. Zimanê ku Agirî hilbijart, zimanê nerm, diyalog û hurmet bi peyva Kurdî bû, ewa xalak gellek bihêz di weşana rojnamevaniyê de ye. Agirî ji bo ku xwedevanan zêde bike, dest nekir bi pirovakasyonan û siloganên mezin hel negirt. Li gor rewş û hêza xwe ya civakî ket meşek dirêj û gellek ên ku wiha dizanîn ji ber gencbûnê nikare salekê zêde dewam bike, surpirîz kirin.

Li Kurdistanê bi sedema domkirina xebata netewî û zulm û zora neyarên netewa Kurd, nifşên mirovî û menewî yên gelê me zû zû tên guhartin.

Ger di cîhana aram û biewle de midehê temenê nifşekê 25 heya 30 sal be, li Kurdistanê ew midehe kurt e û em dikarin bêjin 16 heya 20 sal e. Bi vî awayî Agirî di despêka sedsala 21'an de di nav PDKÎ de dest bi perwerdekirina nifşek nû kiriye ku rengîniya çand û peyva Kurdî, rojnamevanî û weşana kurdî berfirehtir dibîne û xwe di nav gulistanek mezintir li baxçeya herêmî dibîne.



**Mecîd Heqî, Pisporê ragihandinê**

Serbarê wana, giriftek mezin ku di weşanên Rojhilata Kurdistanê xasmayî weşanên PDKÎ de hene, nebûna siyaseta darişţina naverokê li gor standardên rojnamevaniyê ne, ewa jî balkêşiya weşanan kêm dike û ewan pirranî wek tabloya îlanatan tîne berçav. Ew kêmasiya han di Agirî de jî wek beşek ji weşanên partiyê tê xuyakirin. Ez bi hêvî me rewşa han bê guhartin û xasmayî di warê weşandina nûçe û rapor û ragehandinên rêxisinî hin guhertin bên peydakirin.

Pirsa naverok û darişţina çewaniya naverok û li gor wê jî darişţin û dîzaynkirina girafîka weşanê pirsek bernameyî û naverokî ye ku ez hêvîxwaz im ser wê yekê hevalên Agirî zehmetek zêdtir bikşînin.

Zimanê Kurdî bi hemû lehce, zarav û bin zaraveyên xwe şîrîn e.

Ewa ku bo min cîhê nigeraniyê ye ewa ye ku mixabin gellek nivîskarên me di nivîsa bi Kurmanciya Jorîn bi awayekê dinivsînin ku xelkên din yê Kurd bo mînak xelkê navend û Başûrê Kurdistanê eger bikaribin bixwînin, çi lê fem nekin. Dûrkirina zaraveyên bingehîn ên Kurdî ji hevdu û perwerdekirina wana wek zimanên serbixwe dikaribe astengên mezin li ser rêya hevgirtina zimanê Kurdî pêş bîne û bibe hegerê dûrketina çanda Kurdî. Lewma ez hêvîdar im, Agirî li întegirekirina zaraveyên Kurdî û lihevnêzîkkirina wana gavên destpêkî bavêje û bibe reçeşikênê zimanê havbeş yê netewî.

Bi hêviya wê yekê rojek bê Agirî yekem weşana serê sibeha hemû malbatek Kurd be.

# PÎROZBAHÎ

Birayên hêja, berpirsiyarên AGIRÎ
Ez xwendevanekî rojnema we me û tim bêsebir hêviya hejmara we ya nû me.

Rojnameya we ya delal, bi tîpên latînî ên Kurdî, ji me xwendevanan re ronahiyek e, ku derê Kurdistana Îranê ya siyasî, civakî û çandî li ber me vedike. Em kurdên kurmanc yên dervayî welêt bi rastî jî hewcê wê ronahiyê ne.
Bi kurmanciya latînî, bi rastî jî, derheqa vê para gelê me de zanyarî (înformasyon) kêm e. Niha hinek kanalên TV dixebitin, ew ji qalibê xwe yê tenge herêmî dernakevin.

Zimanê we xweş e, kurmanciya Agirî zelal e, bi hewaskarî tê xwendin.

Ez ji bo weşana hejmara 100'î ya AGIRÎ we pîroz dikim, ji we re serkevtinê dixwazim.



**Eskerê BOYÎK, Nivîskar**
01.12.2008

# Cefer Qulî Zengêlî Kî Ye?

Wekî hûn baş dizanin, gellek kurd çend sedsalan berê ji aliyê dewleta Sefewî ya Îranê ve koçber û sirgûnî bakûrê rojhilata Îranê bûn. Navê wê navçeya mezin **Xorasan** e.




Xorasan îroê bûye sê parêzgeh: ya Bakûr, ya Rezewî û ya Başûr. Xorasana Bakûr û çend bajarên Xorasana Rezewî kurdên kurmanc in. Hejmara kurdên kurmanc ên van du parêzgehan nêzîk du milyonan e. Coxrafîya û dûrbûn ê bûye sebeb ku kurdên beşên din ji yên Xorasanê baştir agahdar nebin. Kurdên Xorasanê wek gellek bajar (Amed, wan û...) bi hevdu re tirkî an farsî naaxivin, belkî bi kurmanciyeke delal xeber didin û şanaziyê pê dikin. Di dirêjiya sedsalên derbasbûyî de gellek ronakbîr, nivîskar, helbestvan û mezinên kurd di Xorasanê da hebûne, lê mixabin pirraniya kurdan ew nas nekirine. Yek ji ewan **Cefer Qulî Zengêlî** helbesvanê mezin ê kurd e. Cefer Qulî eger di warê helbestvan de ji Ehmedê Xanî sertir jî nebe, kêmtir nîne, lê mixabin nenas maye. Dûrbûna Coxrafî, nivîsîna bi tîpên farsî, bêxîyaliya gellek calakên çandî û ronakbîrên kurd û wd... hin sebeb in ku mezinên kurdên Xorasanê nehatine naskirin. Lê dîsan jî direng nine. Cefer Qulî di jiyana xwe ya dirêj de welatên Hindistan, Efxanistan, Tacîkistan, Ozbekistan, Turkemenistan, Azerbaycan, Qafqaz, Osmanî, Îraq, Erebistan, Sûriye, Misir û gellek welatên din geriyaye. Wî bi zimanên kurdî, Azerî, Turkemenî, Erebî û Farsî helbest gotine. Helbestên Cefer Qulî gellek bi wate û pijyayî ne. Ruhê mirovayî, ramana baş û paqij, jiyana pak û serbest, xwe fedakirin ji bo azadiyê, muzîkalbûn di helbestên wî de gellekî xuya ne. Helbestên wî herdem bi devkî û sîng bi sîng gihîştine îro, roj û sala ji dayikbûn yan mirina wî kes nizane. Li gor texmînan, ew du sed salî berê mirîye. Ew di gundê Gukan li ser bajarê Qûçanê hatiye dinê û her sal, panzdeh roj ku ji meha biharê ya duyan diçe, kurdên Xorasanê li wî gundî Cefer Qulî bibîr tînin. Divê bê gotin ku Amerîkayîyek bi navê Stephan ji zanîngeha "New York"ê û Rûsek bi navê Îvanov li ser Qulî lêkolîn kirine, lê îsal lêkolînerê navdar yê kurmanc ê Xorasanê ji bo cara yekem dîwana helbestên Cefer Qulî piştî 30 sal hewildan û lêkolînê bi têpên farsî weşand û helbestên wî ji mirinê filitand. Mirov dikare bibêje ev lêkolîner, **Kelîmola Tevehodî**, tenê kesk e ku li ser kurdên Xorasanê bi rastî şareza ye. Wî pitir ji panzdeh pirtûk li ser Kurmancên Xorasanê weşandine û xizmeteka bêhemta kiriye.

Elî Belxkanlû /Tehran
azad_maku@yahoo.com

# Semînerên Li Ser Kurdolojiyê Li Parîsê

**Agirî-Parîs**

Roja îniyê 12-12-2008'an li Parîsê bi însiyatiya xwendekarên beşa kurdî ya INALCO'yê ve, rojeke çalakiyan hate lidarxistin. Armanca van çalakiyan ew bû ku beşa kurdî û kultura kurdî bi kesên alaqedar ve bidin naskirin û rewşa zimanê kurdî û ya Kurdan ya li welatên cuda bidin guftugokirin.

Bernameya çalakiyan bi tevlêbûna mamosteyên beşa kurdî û xwendekar û mêvanan ve ji saet 14'an heta 19'an dewam kir. Bername bi semîner, pirs û bersiv, xwarinên kurdî û muzîka kurdî ve hatibû dewlemendkirin.

Di nava bernameyê de berpirsê beşa kurdî yê INALCO'yê, Helkewt Hakim, perwerdehiya Kurdolojiyê da naskirin û bal kişand ser giringiya beşa Kurdî ya INALCO'yê ku ji sala 1945'an ve ye ku ziman, wêje û kultur û dîroka kurdî tê de weke dersên zanîngehê tên dayîn. Weke ku tê zanîn ev beş ji aliyê Roger Lescot ve hatibû damezirandin û kesên mîna Kamuran Bedirxan, Joyce Blau û Ebdulrehman Qasimlo tê de dersdarî kiribûn.



Ziman û Wêjeya Kurdî bi herdu zaravayên kurdî yên sereke (kurmancî-soranî) li INALCO'yê (Institut National de langues et Civilisations Orientales) ku bi Zanîngeha Sorbonê ve girêdayî ye, weke beşekî di nava zimanên îranî de tê perwerdekirin.



Xwendekarên beşa kurdî dikarin dîplomayên lîsansê û yên masterê jî bi xwendina vî beşî wergirin û ew di nava perwerdehiya xwe de dersên ziman, wêje, çapemenî, dîrok û şaristaniya kurdî werdigirin. Hêjayî gotinê ye ku INALCO'ya Sorbonê yekemîn zanîngeha ewropî ye ku cîh daye ziman û wêjeya kurdî.



Piştî Helkewt Hakim, ji mamosteyên vê beşê, Îbrahîm Seydo Aydogan jî behsa perwerdehiya kurdî ya di nava Kurdên Bakurî de kir û bal kişand ser rewşa zimanê kurdî ya li Turkiyeyê û polîtîkayên zimên ku li ser zimanê kurdî hatine meşandin û reformên vê dawiyê ku li Turkiyeyê pêk tên.

Mamosteyê kurdî Xusro ebdullahî jî behsa rewşa zimanê kurdî ya li Îranê kir û bal kişand ser polîtîkayên rejîma Îranê yên zimanî ku bi qanûnê qebûl dike, lê belê di pratîkê de rê li ber zimanên digire.

Herweha hiqûqnasê kurd Xalid Îssa jî weke mêvan hatibû vexwendin û wî jî ji şerê cîhanî yê yekem ve behsa serboriya Kurdên Sûriyeyê kir û nemaze jî bal kişand ser Kurdên ku hemwelatiya sûrî ji wan hatiye stendin.

Di nava axavtinan re diyar bû ku li herêmê heman polîtîka, lê li welatên cuda li ser Kurdan hatiye meşandin.

Helkewt Hakim destnîşan kir ku bi tenê li Iraqê zimanê kurdî nehatiye qedexekirin û îroj perwerdehiya kurdî ya weke zimanê dayikê bi tenê li Herêma Kurdistanê heye.

Di nava bernameyê de herweha Hunermend Zînê û Rojda jî hebûn ku bi stranên xwe ve muzîka kurdî nîşan dan. Xwendekarên beşa kurdî li malên xwe xwarinên kurdî yên weke, kutilk, dolme, pel, birinc û tirşik amade kiribûn.

Organîzatorên vê roja çalakiyan ya danasîna beşa kurdî, Rûkiye, Fîdan, Raşîda, Mûsa, Mehabad û Rana, ku xwendekarên beşê kurdî ne, da zanîn ku ew ê hersal vê çalakiyê li dar bixin. Lewre diyar bû ku gellek kesên ku hatibûn semîneran, nizanîbûn ku beşekî Kurdolojiyê heye û ziman û wêjeya kurdî di zanîngehan de tê perwerdekirin. Mamosteyan jî spasiyên xwe pêşkêşî amadekarên vê rojê kiribûn û dilxwaziya wan ya Kurdoljiyê pîroz kir.

agiri

**Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail:**
**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@gmail.com**



## Ji Ber Topbaranên Turkiye Û Îranê 27 Gundên Herêma Kurdistanê Hatin Valakirin



Midehê du heftiyan e ku topxaneya Komara Îslamî ya Îranê û Turkiyê berdewam çend deverên Herêma Kurdistanê bi xurtî topbaran dikin. "PUKmedia"yê di vê derbarê de diyar kir ku di encama van êrîşan de heta niha ziyaneke zaf gihîştiye xelkê akincî yên deverên han, 27 gund hatine valakirin û zêdetirî 300 malbat koçber bûne. Rêvebirê nahiyeya Sengeserê Ebdullah Îbrahîm da zanîn ku ji ber top û bombebaranan, zêdetirî 70 xwendekarên her sê xwendingehên Qirnaqe, Şaroş û Soredêyê ji ber valakirina gundên wan, ji xwendinê bêpar bûne. Gellek sewalên gundiyên deverê telef bûne û çend kes di encama wan êrîşan de birîndar bûne.

## Li Îranê Herî Zêde Şîşe Weke Madeya Bêhişker Tê Bikaranîn



Kişandin û bikaranîna madeyên bêhişker di Îranê de bi giştî yê bûye pirsgirêkeke mezin a civakî. Yek ji berpirsiyarên pirojeya nirxandina bilez a rewşa bengdariyê û bikaranîna madeyên hişber di wî welatî de anî ziman ku madeya bêhişker a bi navê '**Şîşe**' di Îranê de herî zêde tê bikaranîn.

Dr. Hesen Refîyî rêveberê pirojeya han ew zanyarî di hevpeyvînekê de bi Ajansa nîve fermî a "ISNA"yê re ragihand. Ew dibêje aliyê kêm zêdetirî 76 hezar kes di Îranê de ji madeyên hişber ên nû mifahê distînin ku di vê navberê de, 'Şîşe' herî zêde daxwazkar hene û **Kirak** jî bi 26 ji sedê di pileya duyem de ye ku her du madeyên bi xeter in.

**Hiroyîn** sêyemîn madeya bêhişker e ku herî zêde li Îranê tê bikaranîn. Dûre madeyên sirrker ên **Tiryak**, **Heşîş**, **Extîsî** û **Kokayîn** li Îranê herî zêde tên bikaranîn. Bikaranîna madeyên bêhişker civaka Îranê bi giştî, nemaze civaka Rojhilatê Kurdistanê nexweş kiriye û çareseriyên wê jî gellek dijwar û zehmet in û mirovê/a bendgar bi tevahî tê bê îradekirin.

## Malpereke Taybet A Kurdên Xorasanê



Malpereke taybet bi Kurdên Xorasanê bi awayekî berfireh dest bi xebatan kir. Malper bi farisî û di hin beşan de jî bi Kurmancî, lê bi tîpên erebî weşanê dike. Nûçe, rapor, gotar û lêkolînên berfireh li ser Kurdên Xorasanê li ser vê malperê dest dikevin û malpera têra xwe dewlemend û balkêş e. Berpirsiyarê malperê, rojnamevan û nivîskarê Kurd ê Xorasanê **Nasir Xakşûr** e.

Navnîşanê malperê ev e:
**www.kurmanj.ir**

## Li Rojhilatê Kurdistanê 8 Hezar Goriyên Teqîna Mayînan



Li gora malpera 'kurdnews'ê, heta niha 8 hezar goriyên mayînan di 5 parêzgehên Rojavayê Îranê de hebûne. Ji wan 5 Parêzgehan, 4 parêzgeh ên Kurdistanê ne û ya din jî Xozistan e ku Ereb lê dijîn. Diyare eva serhejmariya fermî a dewletê ye, lê bêguman hejmara goriyan pirr zêdetir e.

Nêzîk bîst sala ye ku şerê 8 salî yê Îran û Îraqê bi dawî hatiye, lê mixbain hêj tu xebatek bona paqijkirina erd û zeviyên van 5 parêzgehane nehatiye encamdan ku herî zêde Kurd li wan deveran dijîn. Bi sedema teqîna mayînan sedan kes di salê de tên kuştin û birîndarkirin. Heta niha berpirsiyarên Komara Îslamî tu hewlek bona çareserkirin û rakirina mayînên neteqiyayî rêve nebirine û berdewam qurbaniyan digirin. Tê gotin ku 850 hezar hektar erdê mayînrêjkirî ji serdemê şerê 8 salî yê Îran û Îranê re bicî maye.

## Hêzên Mezin Yên Cîhanê Û Çend Dewletên Erebî Ji Bo Gotûbêjkirin Li Ser Bernamey Etomî A Îranê Civiyan





Pênc endamên dayîm ên Konseya Ewlekarî ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî û Almanya û nûnerên hejmarek ji welatên Erebî, roja sêşem, 16.12.2008'an, bona bas û gotûbêjkirin li ser bernameya Etomî ya Îranê di binkeya Neteweyên Yekbûyî de li bajarê "New York"ê civiyan. Hate ragihandin ku civîna han ji ber nigeraniyên raya giştî a navneteweyî derheq progremên gumanbar ên Komara Îslamî a Îranê ên Etomî hatiye lidarxistin. Welatên beşdar ev in: Amerîka, Birîtanya, Çîn, Fransa, Rûsya, Almanya, Îraq, Urdin û çend welatên din ên Erebî.